10

عەلییە دۆزراوەکەی هەڵبجە:

## هەر لە ئێران لە سەددام خۆش بووم

Dalkurd vê heftê maçeke wisa krîtîk dileyîze ku wê diyar bibe ka dikare bibe şampiyon an na... Rûpel ▶8




# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 99 | 09 Pûşper / Juni 2011


Li gor navendên rapirsiyan, Bloka Kurdan di hilbijartinên 12'ê Pûşperê 2011 de hejmara parlamenterên xwe berbiçav zêde dike:

# BDP: +%50

2 / 3 / 11 / 14 »

**Kurdistan**

Tirkiye, Îran û Sûriye li pêşiya maddeya 140'ê astengiyan derdixin ▶5

**Tendirustî**

Jiyana hevseriyê hesta jixwebawerbûnê zêde dike ▶15

**Kurdên Ewrûpa**

Dadgeha Federal a Almanya bi biryarekê mafê penaberê Kurd parast. ▶7

**Opozîsyona Sûrîyê**

Kesayetên Kurd kongreya Antalya wek deskefteke dîrokî nirxandin. ▶4



Wêne: Rûdaw

## Dêrsimî li Mainzê gihiştin hev

9 »




00023
4 191631 701506



23
9 771869 104000

Great Britain

## Bayram Ayaz

### Li dilê Kurdistanê hilbijartinên 12’ê Pûşperê

Em li Amedê ne. Xebatên hilbijartinê dişopînin, dibin şahidê berxwedana kurdewar û Kurdistanî. Em beşdarê xwenişandana Amedê ya 4’ê Hezîranê bûn. Bi deh hezaran hevwelatî di bin kelekela tava Amedê de, ku hêk li ber tavê dipijiya, li qada îstasyonê civiyan. Ji wê derê doz û daxwazên xwe, gilî û gazindên xwe gihandin dinyayê. Mîtînga Amedê ji çalakiyeka hilbijartinê bêhtir, wek ragihandina doza siyasî ya xelkê Kurdistanê bû.

Mitingên Amedê wateyeke xwe ya taybetî hene. Çi partiyek an hêzek bixwaze derheqê mijara Kurd û Kurdistanê de nêrînên xwe bigihîne Kurdan, Tirkan û raya giştî ya navnetewî, tê Amedê, ji vê derê peyamên xwe radigihîne. Bi dorê CHP (31.05.), AKP (01.06), Bloka Kurdî (04.06.) û MHP’ê (06.06.) mîtîngên xwe çêkirin.

AKP û CHP tiştên nêzî hevdu dibêjin. Nêrîna wan ev e: Kurd hene, hinek gav hatine avêtin, em ê di çarçoveya maf û azadiyên kesayetî de hin mafên din jî “bidin” we! Wek piçekî zêdekirina selehiyatên rêvebiriyên herêmî. Herdu partî jî ne amade ne Kurdan wek xelkekî cuda bipejirînin û ser bingehê wekheviyê mafên kollektîf qebûl bikin.

MHP’ya tirkçî-turanî piştî şanzdeh salan hat Amedê. Li nav çavên Kurdan nêrîn û hebûna vî miletê qedîm careka din înkar kirin. Serokê partiya nijadperest Devlet Bahçeli got: “Hemî hevwelatiyên ku li nav sînorên dewleta Tirk dijîn, Tirk in, parçekî ji miletê Tirk in! Kî ji we re tiştekî din bêje, behsa ferq û cudahiyê bike, dijminê vî welatî û miletî ye”! Yanî înkar, dijminahî û imha. MHP’yiyan aqilê xwe hêjî hilnedane serê xwe.

Roja şemiyê (04.06.) Bloka Kurdî xwenişandana xwe çêkir. Li ser navê BDP’ê, HAKPAR’ê û namzetên Blokê gotar hatin pêşkêş kirin. Naveroka gotaran hevaheng bû. Em dixwazin ji gotara ser navê Blokê hat pêşkêş kirin, ji ya birêz Şerafedîn Elçî bahsa çend peyamên bingehîn bikin.

Di gotara Blokê de daxwaz û pêşniyarên gelê Bakurê Kurdistanê di çarçoveya cîbecihkirina doza mafê çarenusî ya xelkekî xweser û xwedî welatekî de hat pêşkêşkirin. Ji dewleta Tirkiyê re, ji Amerika, Yekitiya Ewrûpa û hemî hêzên navdewletî re peyamên zelal û maqûl hatin rêkirin. Destê aşitiyê û pêkvejiyaneke wekhevî hat dirêjkirin ji bo xelkê Tirk. Lê peyameke din jî bi zelalî ji wê qadê ragîha, ku xelkê Kurd êdî bê statûtiyê qebûl nake û wê serê xwe li ber zilmê daneyne, berxwe bide. Berxwedaneke sivîl û aşitiyane bidomîne. Peyameka herî girîng jî pêkanîna yekrêziya hêzên welatparêzên Bakurê Kurdistanê û mizgîniya civandina Konferansa Kurdistanî bû. Bi axaftina ser navê Blokê, manifestoya doza kurdî ya Bakurê Kurdistanê hat diyarkirin. Tevgera bakur hewce ye di armanc û naveroka vê axaftinê de bi israr be. Ev gotar wê li ser gelek “masayan” were nirxandin.

Di dawî de dixwazim rewşa sala 1977 û îro bi serpêhatiyeke xwe bidim ber hev. Sala 1977’ê, dema hilbijartina şarederiya bajarê Amedê ku birêz Mehdî Zana namzed bû, li Amedê em hezar du hezar kes derdiketin ser kolanan dimeşiyan, me diqîriya, digot: “XELKÊ ME WER CEM ME!” Lê îro xelkê Kurd bi sed hezaran û wêrekî derdikevin ser kolanan, meydanan tije dikin, bi ser polis û leşkeran de diqîrin, dibejin: EM KURD İN, TİRKNO, DİNYA GOH BİDE ME! AN AZADÎ AN AZADÎ! Belê, êdî azadî ne dûr e.




Ji namzetê serbixwe yê Amedê Altan Tan nerazîbûna biratiyê:

# Çima zanîngeha Selahedîn tune ye?



**Bawer Çem** Amed

Namzetê Eniya Ked, Azadî û Demokrasiyê yê Amedê Altan Tan li hemberî gotinên Serokwezîr Erdogan a “em birayê hev in, em jî neviyê Selahedînê Eyûbî ne” nerazîbûn nîşan da û pirsa “Madem em bira ne; çima zanîngeha Alparslan heye lê ya Selahedîn tune ye?” kir.

Altan Tan derbarê hilbijartinên 12’ê Hezîranê û gotinên Serokwezîrê Tirkiyê Recep Tayipp Erdogan bi Rûdawê re axivî. Tan diyar kir ku ew ê di hilbijartinên Amedê de ji sedî 70’yê dengan werbigrin û eger dengê wan di bin sedî 70 de be, ew ê xwe neserkeftî bibînin. Tan piştre gotin anî ser axaftina Serokwezîr Erdogan a di mitînga Amedê de kiribû: “Erdogan dibêje, em birayê hev in, werin em hev maç bikin, hembêz bikin. Dibêje ez jî neviyê Selahedînê Eyûbî me. Ez dipirsim; madem tu neviyê Selahedînê Eyûbî yî, li Tirkiyê çima zanîngehên bi navê Selçuk, Mustafa Kemal, Sutçu İmam, Alparslan, Fatih hene lê çima zanîngehên bi navê Selahedînê Eyûbî tune ne? Biratî çima tune ye? Navê zanîngeha Mêrdînê jî kirin Artuklu, çima navê Eyûbî li wê zanîngehê nekirin? Madem em birayê hev in, ji 81 waliyan çend heb Kurd in? Ji 300 generalan çend jê Kurd in? Ev biratiyeke çawa ye?”

**‘Serokwezîr pîvanên Kasimpaşayê dispêre’**

Altan Tan diyar kir ku Tirk xwedî çi mafî bin divê Kurd jî xwedî heman mafî bin û ew ne misqalek zêde ne jî kêm dixwazin. Tan wiha berdewam kir: “Dixwazî em biçin şerîetê, dixwazî em biçin demokrasiyê. Li gorî pîvanên herdu ferasetan jî mafên Kurdan hene. Lê Erdogan naxwaze van pîvanan pêk bîne. Ew tenê pîvanên Kasimpaşayê dispêre Kurdan. Mêrik dibêje perwerda kurdî wê welat perçe bike. Dibêje xweseriya demokratîk jî wê welat perçe bike. Ma Kurd welatê bavê te perçe dikin? Serokwezîr ji bo makeqanûna ku wê nû bê çêkirin, ti sozeke eşkere nade.”

**Navê zanîngeha Mêrdînê jî kirin Artuklu, çima navê Eyûbî li wê zanîngehê nekirin? Madem em birayê hev in, ji 81 waliyan çend heb Kurd in? Ji 300 generalan çend jê Kurd in? Ev biratiyeke çawa ye?”**

**‘Em ê li ber xwe bidin’**

Tan bal kişand ser wê yekê ku rêberê PKK’ê Abdullah Ocalan ji bo gavavêtinê 15’ê Hezîranê nîşan daye û wiha axivî: “Ger di van deman de gav neyên avêtin, wê nimêjên me yên înê yên sivîl dom bikin, boykot û meş wê berdewam bikin. Çalakiyên rûniştinê, berxwedana me ya demokratîk wê dewam bike. Em ê li ber xwe bidin û ti caran bêmafiyê qebûl nekin.”

**‘Bêyî perwerda bi kurdî nabe’**

Tan got ku ger di makeqanûna nû ya sivîl de cih nedin perwerda bi zimanê kurdî, wê vê makeqanûnê qebûl nekin û wiha pêdeçû: “Perwerda kurdî di vê makeqanûnê de tune be, em ê deng nedin vê makeqanûnê. Qet tiştek nebe, em ê bixwe biryara xwe bigrin û vê biryarê di jiyanê de pêk bînin.” Tan bal kişand ser wê siyaseta Tirkan ku hertim ji bo mafên Kurdan ên neteweyî nedin, behsa hesasiyetên civaka Tirk dikin û wiha dawî li axaftina xwe anî: “Em dema behsa van tiştan dikin, tim dibêjin hesasiyetên rojavayê Tirkiyê van tiştan ranagire. Hesasiyeta kî hebe bila bicehime biçe. Hesasiyeta ti kesî min eleqedar nake. Serokwezîr ji aliyekî ve sor dike û ji aliyê din ve jî dibêje hesasiyet heye. Serokwezîr wan xelet agahdar dike. Dema ku ez mafê xwe dixwazim û hin kes radibin hawar û qêrîn bikin, ma ez ê dev ji mafê xwe berdim? Siyasetmedar ger bibêjin, hesasiyetên civakê hene; wê çaxê ez ê bibêjim hûn herdu jî bicehimin.”

**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**İdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# AKP dîsa dibe sereke, CHP û BDP xurtir dibin

Bi heyecan Tirkiye û berê xwe dide hilbijartinên Parlamentoya yên 12'ê Pûşperê. Li gor hemû texmîn û rapirsiyan, Bloka Ked, Azadî û Demokrasiyê vê carê hejmara parlamenterên xwe dighîne 30 parlamenteran.

**Firat Baran** Enqere

Tirkiye roja 12'ê Hezîranê ji bo hilbijartina giştî ya parlamentoyê diçe ser sindoqan. Partiya Aştî û Azadiyê BDP bi çendîn partiyên Kurd û hêzên çepgir û demokratan re di bin navê Bloka Ked, Azadî û Demokrasiyê de tevlî hilbijartinê dibe. Di raya giştî de baweriyeke mezin heye ku BDP îcar di parlamentoyê de herî kêm 30 kursiyan bidestbixe û koma xwe ava bike. Partiya desthilatdar AKP wê piraniya kursiyan dîsa bidest bixe û wê bi serê xwe karibe hikûmetê damezirîne; partiya opozîsyonê CHP jî tê texmînkirin ku dengên xwe zêde bike. Partiya ku bi hinek kasetên seksê ya endamên xwe aloziyeke mezin derbas kir, MHP, hê ne diyar e ka wê di bin bendê de bimîne an derbas bike.

Çend rojan beriya hilbijartinê xwediyê Şîrketa Lêkolînê A&G Adil Gur, ku şîrketa wî li Tirkiyê di nava şîrketên herî navdar de tê dîtin, ji Rûdawê re encama lêkolînekê diyar kir. Gur ragihand ku ew li ser daxwaziya sazî û dezgehan xebatên anketê dikin û encamên ku bi dest dixin jî ji wan saziyan re pêşkêş û got ew ti caran encaman pêşkêşê raya giştî nakin. Lê Gur got dayuyand ku li ser hemû encamên ku heta niha derketine holê dikare analîzek bike û wiha dom kir: "AKP biser dikeve û dîsa bi serê xwe hikûmetê ava dike, CHP wê dengên xwe zêde bike û heta ber bi %30 ve bilind bibe, MHP wê danakeve binî bendê, BDP jî wê hejmara parlamenterên xwe %40 zêde bike."

### Lêkolîna dawî roja îne

Gur da zanîn ku ew ê lêkolîna xwe ya dawî heta du roj beriya hilbijartinê bidomînin û got di çend rojên dawîn de dibe ku hinek hilbijêr dengên xwe biguherînin. Analîza Adil Gur a dawîn a derbarê hilbijartina 12'ê Hezîranê de wiha ye:

**AKP:** Di hilbijartina 2007'ê de ji % 46.6 dengan bidest xistibû. Ez texmîn dikim ku wê dîsa rêjeyek wiha bidest bixe. Sedema herî girîng a ku AKP dengan distîne karîzmaya Erdogan e. AKP dîsa bi serê xwe dibe desthilatdar, lê dibe ku kursiyên wê di bin hejmara 330 de bimînin û nikaribe bi serê xwe makezagonê biguherîne. Ji ber axaftinên Erdogan ên derbarê pirsgirêka Kurd de kiribû, wê dengên AKP'ê li wir kem bibin lê ji Rojava zêdetir deng bistîne.

AKP wê bibe partiya sereke û karibe bi serê xwe hikûmetê ava dike.




CHP wê dengên xwe zêde bike, heta ber bi %30 ve bilind bike.




MHP wê di bin bendê de nemîne, lê gelek dengên wê kêm dibin.




BDP (Blok) herî kêm 28 kursiyan bidest dixe û komek bi hêz ava dike.




### CHP li herêmên Kurdan dengan zêde dike

**CHP:** Bi îmaja Kemal Kiliçdaroglu ya dilsoziyê û bi projeyên wek hêsankirina jiyana malbatan, kêmkirina dema leşkeriyê, dengên CHP'ê zêde bûn. CHP di hilbijartina 2007'ê de bi DSP'ê re ketibû hilbijartinê û % 20.9 dengan standibû, niha tê çaverêkiurin ku dengên xwe bilind bike heta %30. CHP wê li seranserê Tirkiyê dengên xwe zêde bike, namaze li herêmên Rojhilat ên Kurdan. Wê li vê herêmê ku li hinek deran rêjeya dengên wê daketibû heta %1-2 wê karibe çend qat zêde bike û li gor hejmara dengên namzetên serbixwe dibe ku li hinek bajaran parlamenter jî derxe.

**MHP:** Li ser bendê xuya dike. Dibe ku kasetên seksê yên hinek endaman di nava hinek hilbêjêran de wek helwêsteke li dijî kevneşopiyan bê dîtin û dibe ku di nava hinek hilbijêrên din de jî wek helwêsteke, "li dijî MHP'ê êrişek heye, dixwazin partiya me di bin bendê de bihêlin" derxîne holê. Ev her du helwest wê dengên MHP'ê weke mêzîna rast bibin û bînin. Ji ber vê yekê ez pir bawer nakim ku ew kaset bandorek mezin li ser MHP'ê çêbike. Wê MHP bi van kasetan na, lê bi proje, siyaset û bi performansa Bahçeli dengan bistîne an jî winda bike.

### Gel namzetên BDP'ê pejirand

**BDP:** Di nava hemû partiyan de tenê jêrxaneya BDP li ser namzetên ku hatin diyarkirin, nerazîbûniyan nîşan neda û rexne nekir. Li ser herêmeke diyarkirî namzetan derxistin, li herêmê bi hinek hêzên Kurd re û bi aliyên kevneşop re îttifaq kirin, li Rojavayê Tirkiyê jî bi hêzên çep û sosyalîst re îttifaq kirin. Hem ji ber van îttifaq hem ji ber namzetên ku di ji aliyê gel ve hatin pejirandin û hem jî ji ber ezmûna wan a ku di hilbijartina berê de dîsa bi rêya namzetên serbixwe bidest xistibûn, ez bawer dikim kursiyên xwe ji % 40 zêde bikin û ev jî wê bi kêmanî wek 28-30 kursî bin.

Rêxistineke tirk kevnemisteşaran ji bo konferansekê li Şeqlawe dawet dike

# Kevnemisteşarên Kurd ji bo cihên veqetandî dicivin

Wê demê alîgirên rejîmê bûn, niha dixwazin navçeyên veqetandî vegerin ser Kurdistanê



**Hêmin Xoşnaw**

Çend kevnemisteşarên heyama rêjîma Saddam ji aliyê dezgeheke Tirkî bo konferansekê tên vexwendin û ew jî di konferansê de daxwaz dikin ku Kerkûk û navçeyên veqetandî li Herêma Kurdistanê bên vegerandin.

Rêxistina Lêkolîna Civakî û Aborî `Ecopolitic` a Tirkî di rojên 28 û 29`ê meha borî de, ji bo geşkirina diyalogê û nasandina rewşa Herêma Kurdistanê û çareseriya kêşeya Kurd li Tirkiyê û dîtina çareseriyekê bo kêşeya Kerkûkê û navçeyên cihê nakokiyê, konferansek li bajarokê Şeqlawe yê ser bi parêzgeha Hewlêrê saz kir. Ev konferans ku bi hevkariya Zanîngeha Silêmaniyê û nûnerê yasadanerê navdewletî Şêx Salar Hefîd hat girêdan, ji bilî çend siyasetvan, parlamenter, nivîskar, rojnamevan û mamosteyên zanîngehan, çend kevnemisteşarên serdema rêjîma Baasê jî tê de amade bûn: wek Salih Axa ji eşîra Goran, Şêx Ebdulezîz Ebdulkerîm Ebdulla ji eşîra Zengene, Rifet Şêrwanî, Nazim Berwarî û Faris Sûrçî.

Derbarê vexwendina wan kevnemisteşarên ku di raya giştî de wek caş tên binavkirin de, Şêx Ebdulezîz Ebdulkerîm Ebdulla bo Rûdawê got: "Sazkerên vê konferasnê berî çend mehan li gel Şêx Salar hatin devera me û me gotûbêj li ser kêşeyan kir û em ji bo vê konferansê dawet kirin."

Serokê Rêxistina Lêkolîna Civakî û Aborî `Ecopolitic` a Tirkî Ehmed Tariq Çeleng bo Rûdawê ragehand ku wan diyarkirina endamên konfiransê sipartibûn Şêx Salar Hefîd: "Em pêkhate û xelkên vir nas nakin, lewma dibe ku di destnîşankirina endamên konferansê de kêmasiyên me hebin."

Di vê konferansê de çend pirsên deverê hatin gotûbêjkirin ku yek ji wan pirsa navçeyên cihê nakokiyê bû. Salih Axa, di wê benda konfiransê de midaxele kir û got baştirîn çareserî bo van navçeyan vegerandina wan li ser Herêma Kurdistanê ye. Navbirî bo Rûdawê daxuyand: "Armanca me ji amadebûnê ew bû ku em piştgirî bidin Hikûmeta Herêma Kurdistanê bo vegerandina navçeyên veqetandî. Ji ber ku bê vegerandina van navçeyên veqetandî, ev kêşe nayê çareserkirin."

Hejmareke misteşaran piştî raperîna 1991`ê, tevî efuya giştî ya bereya Kurdistanî, çûne Musilê û navçeyên din ên di bin desthilata rêjîma Saddam de. Şêx Ebdulezîz Zengene ku heta rûxandina rêjîma Saddam li Musilê bû û niha meaşekî maqûlan jê re hatiye veqetandin, dibêje: "Em di serdema Saddam de her tişt bûn û ne tiştek bûn jî, çimkî rêjîmê bosteke axê li Musil, Kerkûk û Selahedîn bi navê me nedikirin."

Piştî rûxandina rêjîma Saddam, piraniya van kevnemisteşaran vegeriyan navçeyên xwe li Herêma Kurdistanê, lê hinek ji wan niha jî li Musilê ne û hinekên din jî çûne derveyî Îraqê. Salih Axa got: "Ewên li Musilê mane ne serokeşîr in, lê ew xwe weke serokeşîr dibînin û ti roleke wan tune. Berjewendiyên şexsî li pişt nevegeriyana wan heye."

Piştî gumanên destpêkê Kurd bi razîbûn ji kongreya Antalya derketin

# 4 Kurd bûn endamên desteya rawêjkar

▶40 sal piştî desthilatdariya Baasê, opozisyona ji bo dahatuya Sûriye giha hev.

▶Di guftûgoyan de Kurd netewa duyem a Sûriyê hat binavkirin lê ev xal di belavokê de derbas nebû

**Hêmin Xoşnaw**

Gelek kesayetiyên kurd yên Rojavayê Kurdistanê kongreya opozîsyona Sûriyê ku li bajarê Antalya yê Tirkiyê hat lidarxistin weke "kongreyekî dîrokî" binav dikin. Hinek partiyên kurd jî dibêjin ku daxuyaniya kongreyê "gûmanên wan kêm kirin."

Heftiya borî nêzîka 300 kesatiyan ji nûnerên hemû pêkhateyên Sûriyê li bajarê Antalyayê civiyan û li ser pêşeroja Sûriyê û çawaniya rizgarbûna ji desthilata 40 salî ya malbata Esad gotûbêj kirin. Bêyî liberçavgirtina encamên wê jî, tenê komkirina aliyên opozîsyona Sûriyê weke destkefteke girîng tê dîtin, ji ber desthilata partiya Baasê li Sûriyê di 40 salên borî de hemû derfetên ji bo komkirina civaka Sûriyê li dora projeyekê ji nav biribû. Aliyên ku tevî kongrê bûn li ser redkirina diyalogê ligel rêjîma desthilatdar û karkirina ji bo rûxandina wê, herwiha gihandina serok Beşar Esad bi dadgeha Lahey û dabînkirina piştgiriyê ji bo xwepêşanderên hundir, yekdeng bûn, lê derbarê pêwendiya olê bi dewletê re rastî nakokiyan hatin.



**Di kongreyê de kesayetiyên kurd jî hebûn: Li pêş Selah Bedredîn û Şêx Xeznewî**

### Pêkhateyên Sûriyê yekem car civiyan

Rezwan Badînî ku xelkê Rojavayê Kurdistanê ye û li Zanîngeha Selahedîn li Hewlêrê mamoste ye, komkirina hemû aliyên opozîsyona Sûriyê weke karekî girîng dibîne û bo Rûdawê got: "Kongreya Antalya yekemîn kombûne ku karibû pêkhateyên siyasî yên opozîsyona Sûriyê bîne cem hev, da ku li ser hemû kêşe û pirsgirêkên opozîsyona Sûriyê gotûbêjan bikin. Lewma ev kongre weke kongrekî dîrokî tê naskirin." Herwiha bi baweriya Endamê Civata Serokatiya Partiya Wîfaqa Kurd li Sûriyê, Xemgîn Dêrikî, yek ji bextreşiyên opozîsyona Sûriyê ya erebî û kurdî û oldar û sekûler di çarçoveya bernameyeke siyasî de kombûna wane: "Kongreya Antalya yekemîn bû û bawer im di pêşerojeke nêzîk de wê çend kongreyên bi vî rengî bên lidarxistin."

Her çiqasî amadekarên kongreyê partiyên kurdî yên li ser qada siyasî ya Sûriyê dawet nekiribûn, lê çend kesayetiyên siyasî, ronakbîr û akademîsyenên kurd tê de beşdar bûn, weke Mihemed Hemo, Selah Bedredîn, Mirad Xeznewî û Rezwan Badînî.

Badînî eşkere kir ku di kongreyê de behsa kêşeya Kurd hat kirin û di daxuyaniya dawî de jî amaje pê hat kirin: "Di xala 4'em a daxuyaniya kongreyê de hatiye gotin ku Sûriyê ji neteweyên Ereb, Kurd û Aşûriyan pêk tê û hemû xwediyên mafên wekehev in. Hat daxwazkirin di destûra bê ya Sûriyê de kêşeya van neteweyan bi awakî dadmend û wekhev li ser bingeha pîvanên navdewletî bê çareserkirin."

Li aliyê din bizava siyasî ya kurdî rexne li kongreyê digire ku di daxuyaniya xwe de navê gelê kurd weke duyemîn neteweya Sûriyê nehatiye diyarkirin. Di wê derbarê de Badînî got: "Me zêde gengeşe li ser wê mijarê kir, lê wisa bi aliyên beşdar baş bû ji ber mafê kongreyê yê amadekirina destûr tune, divê ew mesele heta dema amadekirina destûra nû bê paşxistin." Civata siyasî ya partiyên Kurdistanî li Rojavayê Kurdistanê berê bi guman li vê kongreyê dinerî, ji ber digotin kongreyê partiyên kurdî dawet nekiriye. Di heman demê de ne diyar bû kî li pişt amadekirina kongreyê ye. Nûnerê Partiya Yekîtiya Demokrata Kurd li Sûriyê Ebû Sabir ragehand: "Gûmanên Kurdan ne bê bingeh bûn. Ya girîng ew e ku kongreya Antalya karê hevbeş ê di navbera hemû pêkhateyên Sûriyê de bû, bê paşguhxistina ti alîkî. Ev jî destkefteke girîng e ji bo pêşerojeke baştir li Sûriyê. Bi xwendina daxuyaniya dawî ya kongreyê gûmanên min neman."

### "Kongreyekî tije deskeft"

Derbarê gûmanên civata partiyên Rojavayê Kurdistanê, Badînî kongre weke kongreyekî "tije destkeft" wesif kir: "Me karî tiştên pir erênî ji gelê xwe re bikin û wan tiştên mantiqî bi hemû endamên kongreyê bidin selimandin." Beşdarên kongreyê di dawî de gihiştine lihevkirinê bo pêkanîna desteyeke rawêjkar û daxwaz ji Esad kirin yekser dev ji serokatiyê berde û desthilata xwe bide cîgirê xwe heta ku civatek pêk bê û erkê guhastina welat berbi demokrasiyê pêk bîne. Deste ji 31 endaman pêk tê û di dema hilbijartina wê de du lîste ketine rikberiyê, yek kesên serbixwe tê de bûn û ya din jî hemû pêkhate li xwe girtibûn, lê yên dawî bi piraniyan dengan hatin hilbijartin. Di lîsteya serkeftî de 4 kes ji Îxwan Misilmîn in, 4 ji Ragihandina Şamê û 4 Kurd û 4 kes jî ji êlan cîh digirin. 15 kursiyên din jî bo ciwanan hatin terxankirin.

Kongreya opozisyona Sûriyê li Antalya:

## Oldarên kurd dewletek sekuler xwestin lê siyasetmedarên ereb hêrs bûn

**Hîm Mele Ehmed**

Tevî hewldanên Partiyên Tevgera Niştîmaniya Kurd li Sûriyê yên boykotkitina kongreya opozisyona Sûriyê li Antalyayê, lê dîsa jî hejmara beşdarên Kurd giha 55 kesî. Di nav beşdarên Kurd de nûnerên 8 Partiyan hebûn, piraniya wan tenê li derveyî welêt çalakin.

Herweha hejmarek mezin ji kesayetiyên kurd yên beşdar kesên di nav dîmena siyasî û civakî ya Rojavayê Kurdistanê de nenaskirî bûn. Hacî Silêman, yek ji beşdarên Kurd li Antalyayê bû û got ku "di kongireyên wiha de tiştekî normale ku hejmarek kesên nenas hebin, hin alî û dezgeh tenê ji bo berjewendiyên xwe beşdar bibin, lê bi giştî beşdariya kurdî di civînê de baş û giring bû." Çalakvan û rojnamevanê kurd H. Silêman ji Rûdawê re diyar kir ku kongreya Antalyayê ne gelekî serkeftî bû û tenê "dengê daholê ji dûr ve xweş e, serkeftina wê ew bû ku ji hev neket. Nakokî di nav me de pir bûn, hin caran ew bû pevçûn çênedibîn. Ereban Kurd wek gel nedipejirandin. Herweha rêberiyek veşartî ya kongreyê hebû. Me nedikarî em wê rêberiyê bibînin, pêşniyar yan rexneyên xwe pêşkeş bikin. Me hertim bi rêya hinekan ew didîtin. Ew rêberî hertim li dijî nerînên me bû. Çanda nepejirandinê di serê wan de hebû. Çanda ku Baasî û nijadperestan di serê wan de çandiye. Wek nimûne Misilmanan digotin em hemû hevwelatî ne, çênabe hûn Kurd xwe wek miletekî din diyar bikin. Yan jî hin serokeşîr hebûn digotin Ereb pir hindikin li Sûriyê."

### Kurd û Ereb: daxwazên cuda

H. Silêman nerazîbûna xwe ji karê kongreyê bi giştî diyar kir, nemaze awayê birêvebirina amadekirina encama kongreyê: "Awayê nivîsandina ragehandina dawî ya kongreyê yek ji karên şaş ên kongreyê bû. Wekû beşdarên kurd ti gotina me di wê ragehandinê de tinebû, rola me tenê di nuqteyên girêdayî Kurdan de hebû."Ji aliyekî din ve hate zanîn ku sekuleriya "Sûriya nû" û veqetandina ol û dewletê ji hevdu bûbûn astengiya herî mezin di civînên kongreya Antalya de. Tişta herî balkêş di vê pirsgirêkê de ew bû ku oldarên kurd daxwaza sekuleriyê kiribûn, lê hêzên ereb li dijî vê daxwazê rawestiya bûn. Şêx Mihemed Murad Xeznewî, ku kurdekî Qamişlo ye, di axaftina xwe de ev gengeşî destpê kir, gava got "Em di dezgeha Şêxê Şehîdan Dr. Maşûqê Xeznewî ji bo hevpeyvîn û tolerans û nûkirina olî daxwaza dewleta yasa dikin, dewletek azad û demokrat û lêberal û sekuler, li ser bingehê veqetandina ol ji dewletê û nedijminatiya dewletê ji olê re, da ku mizgeft hemû mafên xwe bistîne, bêku ti alî tevlî karê wê bibin, herweha kenîse û parleman xudan taybetmendiyê bin. "

Ev gotina şêxê kurd bû cihê nerazîbûnê ji aliyê hejmarek mezin ji beşdarên ereb, nemaze ku endamên Ixwanên Misliman yên ereb di civînê de pir bûn. Di pey axaftina Şêx Xeznewî re yekser hin kesayetiyên ereb nerazîbûna xwe diyar kirin û di heman saetê de dest bi komkirina îmzeyan kirin ji bo li dijî vê daxwazê derkevin. Hêzên Kurd bi tevayî û hin aliyên opozisyona Sûriyê, nemaze yên çep û sekuler, bi daxwaza Şêx Xeznewî re bûn. H. Silêman dibêje "Em jî li hemberî kiryarên olperestan rabûn û me ligel hêzên ereb hevpeymaniya sekuler ragehand."

### Kongreyek jî bêyî Kurdan

Çend roj di pey kongreya li Antalya, li Brukselê jî kongreyekî din yê opozisyona Sûriyê pêk hat. Li gel ku amadekarên kongireyê ragehandin ku civînên wan berdewamiya kongreya Antalyayê ye, lê çavdêrên siyasî diyar dikin ku ew kongre bersivek bû li hemberî hêzên sekuler yên Antalyayê. Nemaze gava em bibînin bêhtirê beşdarên Kongireya Brukselê alîgirên Ixwanên Misliman bûn. Ne tenê hêzên kurd jê dûr mabûn, lê hêzên ereb yên Ragehandina Şamê û yên Kombûna Demokrat jî. Herweha ragehandina dawî ya Brukselê qet nêzîkî pirsa kurdî nebû.


Wêne: Rûdaw

“Hawargihandina aliyên derveyî di encama lawaziya aliyên navxwe û saziyên dewleta Îraqê de pêk tê.”

Şêwirmendê Malikî bo Karûbarên Herêma Kurdistanê, Adil Berwarî:

# Maddeya 140: Tirkiye, Sûrî û Îran rêgir in

**Hêmin Baban Rehîm** Hewlêr

Şêwirmendê Nûrî Malikî bo Karûbarên Herêma Kurdistanê Adil Berwarî, Tirkiye, Sûriye û Îranê weke rêgirên derveyî li ber cîbicîkirina maddeya 140’ê ya destûra Îraqê binav dike. Herwiha Cîgirê Waliyê Kerkûkê, Rakan Cibûrî jî dibêje “hawargihandina ber derve bi nediyarbûna xurt a aliyên navxweyî û saziyên dewleta Îraqê ve girêdayî ye.”

Cîgira Serokê Komîteya Bilind a Cîbicîkirina Maddeya 140’ê a destûra Îraqê Nermîn Osman bo Rûdawê ragehand, di pileya yekemîn de aliyên derveyî rêgir in li ber cîbicîkirina maddeya 140’ê û got: “Ev aliyên derveyî welatên herêmê ne, yên ku kêşeya Kurd li wan heye, ji bilî wan welatên din ku naxwazin Îraq aram be.” Navborî helwesta rêgir a van aliyên derveyî, bi du sedeman ve girêdide: “Tirsek li wan welatan di dilê gelek kesan de heye ku bi cîbicîkirina vê maddeyê re navçeyên Kurdî û Herêma Kurdistanê mezin dibe. Herwiha tirsa wan ji wêya jî heye ku bi vegerandina Kerkûk, Xaneqîn û navçeyên veqetandî yên din bo ser Herêma Kurdistanê, îhtîmala avabûna dewleta Kurd zêdetir û aboriya wê xurt dibe.”

### “Berpirsyariya beşekî zêde yê bicihnehatî yê maddeyê di sitûyê Malikî de ye”

Nermîn Osman, ku di lîjneyê de berpirsa Komîteya Darayî ye, dibêje ku li pêşberî maddeya 140’ê ya taybet bi Kerkûk û navçeyên cihê nakokiyê yên din, rêgirên navxweyî ji rêgirên derveyî zêdetir in, lê “Rêgirên derveyî bandoreke rasterast dikin li ser rêgirên navxweyî, yanî astengiyên navxweyî bi piştgiriya yên derveyî gurtir dibin.” Nermîn Osman herwiha di wê baweriyê de ye ku berpirsyariya beşekî zêde yê bicihnekirî yê maddeya 140’ê “di sitûyê Malikî de ye.” Di demekê de ku di çarçoveya 18 xalên aliyê Kurd de, Malikî soz daye di hundirê 2 salan de maddeyê bicîhbîne, Osman pêşbîniya bicîbûna maddeyê di serdema vê kabîneya niha ya Malikî de jî nake û wiha dibeje “ne geşbîn im ku di vê demê de made bicîh bibe.”

‘Komîteya Cîbicîkirina Maddeya 140’ê ya Destûra Îraqê’ lîjneyeke destûrî ya wezarî û yasayî ye û li gor biryara 46 di 9’ê Tebaxa 2006’ê de hatiye damezirandin. Piştî îstîfakirina wezîrê berê yê dadê li Îraqê Haşim Şiblî ji serokatiya komîteyê, Rayîd Fehmî cihê wî girt.

Derbarê kesên ku dibêjin dema maddeya 140’ê di dawiya sala 2007’ê de xilas bûye û madde miriye, Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di hevpeyvîneke ligel rojnameya Şarqulewsat de ragehand: “Eger maddeya 140’ê miribe, yanî destûr miriye, eger destûr jî mir, yanî yekîtiya xaka Îraqê xilas bûye.”

Endama berê ya Civata Hukimdariyê li Îraqê Songul Çapûk got: “Maddeya 140’ê maddeyeke destûrî ye û qet namire.” Çapûk di heman demê jî rêgirên derveyî jî weke faktorekî “bibandor” li ber cîbicînebûna wê maddeyê de dibîne û dibêje: “Hikûmet bi dirêjiya temenê xwe ji 2003’yê û şûnde vê maddeyê paşdixe, lewma ew berpirsê yekemîn e.”

### Hawargihandina aliyên derveyî wekî encama lawaziya aliyên navxwe

Cîgirê Waliyê Kerkûkê Rakan Cibûrî jî ji bo Rûdawê got ku li gor wî piştîvanîkirina aliyê derveyî ji bo aliyê navxweyî li ser maddeya 140’ê tiştekî asayî ye, ji ber ku ev madde nabe “bi kêmasî bê bicihkirin, ji ber maddeyeke destûrî ye, lê divê bê sererastkirin. Ji ber serdestiya Kurdan li wî bajarî, hinek xwe davêjin bextê aliyên derveyî. Hawargihandina aliyên derveyî di encama lawaziya aliyên navxwe û saziyên dewleta Îraqê de pêk tê.”

Şêwirmendê Serokwezîrê Îraqê bo Karûbarên Herêma Kurdistanê Adil Berwarî bo Rûdawê got ku heta cihekî baş ew piştgiriya gotinên Fehmî dike û dibêje: “Divê nûnerên Kurd di Civata Wezîran û parlamentoyê de zextên zêdetir bixin ser hikûmetê û yên ku rêgir in li ber cîbicîbûna maddeyê, da ku bê bicîkirin.” Berwarî welatên rêgir diyar dike: “Tirkiye, Sûriye û Îran rêgir in li ber cîbicîbûna maddeya 140’ê ya destûra Îraqê, herwiha Lîsteya Îraqiye li dijî bicîkirina maddeyê ye.”

Berwarî hişyariyê dide derbarê paşxistina zêdetir ya bicîkirina maddeyê û dibêje: “Divê serjimêrî û asayîkirin destpê bikin, eger ev neyên kirin, ev madde nayê bicîhanîn û tê paşxistin. Paşxistina wê jî ne di berjewendiya Kurdan de ye, nabe rê li ber sererastkirina maddeyê jî bê vekirin.”

Endamê Parlamentoya Îraqê Erşed Salihî ku weke serokê Bereya Turkmenî hat hilbijartin, derbarê hawargihandina Turkmen û Ereban bo aliyên derveyî dibêje: “Eger ev madde bi wan kêmasiyan bê bicîhanîn, mafê me ye ku hawara xwe bibin ber wan aliyan ku em wan wekî dostên xwe dibînin.

Hat bihîstin ku serokkomarê Tirkiyê Ebdulla Gul wê piştî hilbijartinên 12’ê vê mehê de, serdana Kerkûkê bike.

Hinek aliyên Turkmenî vê serdanê weke piştrastkirina Turkmenan ji hebûna piştevaniya Tirkiyê ji xwe re şirove dikin, hinek din jî di vê kêşeyê de weke meylkirin dibînin.

Nerîn di rûpela 14 de

**Divê nûnerên Kurd di Civata Wezîran û parlamentoyê de zextên zêdetir bixin ser hikûmetê û yên ku rêgir in li ber cîbicîbûna maddeyê, da ku bê bicîkirin**


Adil Berwarî

## Navçeyên cihê nakokiyê

Navçeyên cihê nakokiyê weke ku Komîteya Cîbicîkirina Maddeya 140’ê diyar kirine ji parêzgeha Kerkûkê bi hemû qeza û nahiyên wê, di nav de jî qezayên Dûz Xûrmatû, Çemçemal, Kelar, Kifirî û Tazexûrmatû pek tên. Li parêzgeha Nînewa jî van qezayan lixwe digire: Şengal, Şêxan, Hemedaniye, Tilkêf, Başîk, Qehtaniye, Mexmûr, Zumar, Akrê û nahiyên wê. Li parêzgeha Diyala jî van navçeyan lixwe digire: qezaya Xaneqîn û nahiyên Celewla, Sadiye, qezaya Miqdadiye û nahiyên wê, navenda qezaya Beledroz, ligel jî nahiya Mendelî, qezaya Bedre û nahiya Cesan, nahiya Meydan û nahiya Qoretu.




## Budce kêm dibe

Butceya terxankirî ji bo bicîhkirina maddeya 140’ê ya sala 2009’ê ji 240 milyon Dolar pêk dihat. Di sala 2010’ê de ew hejmar daket 150 milyon Dolar û îsal jî gihişte 170 milyon Dolar. Ev yek jî bûye cihê nîgeraniya lîjneyê ku her sal budceya wan kêmtir dibe.

# Sîpan li ezmanê Brîtanya teqleyan dide

Azad Mîran Brîtanya

Dibêjin her karek zerer û qazancên wê hene, koçberbûna Kurdan ali welatên Rojava ji gelek kesan re ji bo pêşdebirina astê xwe yê zanistî û xwendinê û di gelek waran de bûye derfeteke baş. Yek ji wan jî lawekî Kurd e li bajarê Leeds li Brîtanya kariye bigihe astê pîlotî û qehremanî û teqlebazîkirinê bi firokê li ezmanê Ewrûpa.

Sîpan 13 sal in ji Kurdistanê bar kiriye û 3 sal in bi firîna li ezmanê Brîtanya mijûl e, li akademiya firînê ya bajarê Leedsê pîlotî xwendiye. Sîpan ji bilî pîlotiyê, bakalryosê warê civakî û felsefe jî ji zanîngeha Leedsê standiye.

Sîpan ji zaroktiyê ji firînê hez dikir. Ew jî weke bi sedan zarokên Kurd ku di dibistana seretayî de pirsa mamostê weke, "hez dikî bibî çi?" wiha bersiv daye: "Hez dikim bibim pilot."


Wêne: Rûdaw

Ji bo Sîpan xweştirîn tiştê li ezmanan tevî firokeyê lêdana teqleyan e...

### Xewna wî bû rastî

Sîpan wiha axivî: "Hê ji zarokatiyê ve ew xewna min hebû ku firokeyeke min hebe û di ser çiyayên Kurdistanê de bifirim û bizivirim." Lê xewna wî li Brîtanyayê bû rastî: "Kurdistan niha di destpêkê de ye û hê karekî zêde jê re divê."

Navbirî niha giringiyeke zêde dide qehremankariya asmanî (aerobatic) û hemû şiyanên wî yên darayî û manewî bo fêrbûna vê corê pîlotiyê li ser erkê wî bi xwe bûye. Sîpan dibêje, carekê bi firokeyeke biçûk çûye Amedê û li piraniya welatên Ewrûpayê jî geriyaye.

Sîpan behsa wan saetan dike ku bi firokeyê li ezmanan difitile û carna jî bi firokeya xwe teqleyan dide xwe, yan xwe dihejîne: "Di dema firrînê de hest bi serbestî û azadiyekê dikî ku qet li ser erdê hest pê nayê kirin. Çi bêjim, tu li ser hemû tiştekî li ser zeviyê dinerî û tê û diçî."

### Sosyalojî û felsefe xwend

Wê roja ku me hevpeyvîna xwe ligel Sîpan kir, em pê re siwar bûn û bi firokeya wî pêlekê li ezmanê Yorkshire fitilîn, lê Sîpan wê rojê ti teqle li firokeya xwe nedan. Jixwe ew natirse: "Xweştirîn tişt li ezmanan lêdana teqleyan e û bo laş jî baş e, heta niha min çend caran teql lêdane, lê ev ne firokeya `aerobatic` e.

Ew berî ku bibe pilot, herdu warên sosyolojî û felsefe xwendine. Derbarê van waran de, Sîpan dibêje: "Sosyolojî derbarê jiyana xelkê ye, yanî sîstem û kevneşopiyên civakî. Felsefe jî bi wateya jiyanê taybet e û gelek pirsiyaran li ber çavan radixîne weke bûyîn, bîr û hiş, Xweda, bingehên kevneşopiyan, exlaq û zanîn."

### Pîlotên Kurd ên aerobatik tune ne

Lê derbarê hunera firrînê de dibêje: "Firîn bêtir babeta fîzîk û matmatîk e, herwiha firîn şiyana mirov a çavlêkirina xwezayê derdixe û sûd ji qanunên fîzîkê werdigire. Bi kurtî em dikanin bêjin, bi firînê xwestekên mirov ji bo testkirina ser rûyê erdê pêk tê."

Sîpan hinek behsa taybetmendiyên xwe dike: "Ji xwendina pirtûkan û temaşekirina fîlmên dokumenterî hez dikim. Bi qasî ku ji firînê hez dikim ewqasî jî ji stêrnasiyê (astronomî), fîlozofî û operayê hez dikim. Ji muzîkê jî ji ya klasîk hez dikim."

Navbirî bihîstiye gelek Kurd hene di warên pîlotiyê de dixwînin, lê nebihîstiye ti Kurdek di wî warê wî de bixwîne: "Çend hejmarên kêm ji pîlotên Kurd li Ewrûpa, Amerîka û Kanada hene, lê heta niha min nebihîstiye ku firokevanê aerobatic ên Kurd hebin."

Sîpan hêvîdar e ciwanên din ên Kurdistanê di vî warê de hebin: "Da ku bikarin bi hev re nimayîşeke firîna firokeyan li Kurdistanê saz bikin."

Civata Sûrî li Hollanda ji Rotterdamê daxwaza demokrasiyê dike

# Ji Meydana Yasemîn piştgirî

Mîrko Ciwamêr Hollanda

Ev çendîn hefteye Kurdên Rojavayê Kurdistanê û Erebên Sûriyê duyemên bajarê mezin ê Hollanda, Rotterdam kirine paytexta çalakiyên xwe. Ew ji wir bi şêweyekî hûr çavdêriya bûyerên rojane yên hundirê Sûriyê dikin û dighînin Facebook û Youtube û Twitter. Ew herwiha hewl didin bala medyakar, siyasetvanên Hollanda bikşînin ser doza xwe û wiha bikin ku ew jî piştgiriya xwenîşandên Sûriyê bikin.

Di merasîma vekirina "Meydana Yasemîn" de ku ji aliyê Civata Sûrî li Hollanda hatiye damezrandin, parêzgarê Rotterdam Ehmed Ebû Talib got "îro ku em bîranîna bombekirina bajarê xwe dikin ku di dema Şerê cîhanî yê duyem de ji aliyê Alman pêkhatibû, ez dixwazim ji we re bêjim: xelkê Rotterdam pishtgiriya gelê Sûriyê dike ku ji bo azadiyê serî hildane."

### Kurd û Ereb li hemberî Esed bûn yek

Xwediyê fikra danîna Meydana Yasmîn ku li cihê pêşangeheke kevin a otomobîlan li Rotterdam hatiye danîn, Kurdekî Rojavayê Kurdistanê ye û navê wî Roj Ebdullatîf (30) e. Roj ji sala 1999'ê ve li Hollanda dijî. Li gor axaftina Roj niha Kurd û Ereb li Sûriyê "bi yek zimanî diaxivin" û armanca wan jinavbirina rijîma serokê Sûriyê Beşar Esed e. Ew xortê Kurd dibêje "xwenîşandanên Kurdan li hundir û derveyî welat ji bo hemû Sûriyê ne, lê ne tenê ji bo Kurdan e."

### "Sûriye ji Kurdan ditirse"

Tevî ku karbidestên Sûriyê bi tundî hemberî xwenîşanderên başûrê Sûriyê derdikevin, lê hikûmet dudil bû di mesela bikaranîna heman asta tundûtîjiyê li himber Kurdan, ev nerîna endamî Komîteya Civata Sûriyê li Hollanda, Siwar Seid e. Siwar dibêje dewleta Sûrî bi qasî Ereban, Kurd azar nedane "ew jî ji ber ku ew ji Kurdan ditirse." Ev tişt jî di demekê de ye, mîna Siwar dibêje, ku "Kurd jî ev çend hefte ne li bakûr beşdarî nerazîbûnan dibin" herwiha dibêje "Sûriye bi hişyarî bi Kurdan re tevdigere, ji ber ku dizane eger bi şêweyekî berevajî tevbigere wê derencamên baş nebin." Siwar di wê baweriyê de ye ku li herdu bajarên giring ên weke Heleb û Şamê hejmareke mezin a Kurdan dijîn, "loma eger ew bên azirandin, wê di berjewenda rijîma Baas de nebe."

### Hollandî li dijî Esed in

Bêtiriya endamên Civata Parêzgeha Rotterdam bi şêweyekî eşkere beşdarî çalakiyên rojane yên li Meydana Yasmîn dibin. Herwiha bêtiriya wan bi eşkere dakokiyê li ser wê daxuyaniyê dikin ku bi navê Civata Sûrî li Hollanda derketiye û daxwaza azadî û demokrasiyê li Sûriyê dikin. Herwiha Serkomar Beşar Esed jî protesto dikin û daxwaz dikin ku di zûtirîn demê de bikaranîna hêza leşkerî li dijî xwenîşanderan bi dawî bibê.


Wêne: Rûdaw

Çalakvanên Kurd û Ereb encamên çalakiyan di înternetê de belav dikin

Wan encamên Civata Parêzgeha Rotterdam herwiha soz dane ku goşaran bixin ser Hikûmeta Holanda û bi taybetî Wezîrê Derve ji bo ku dakokiyê li ser mafê xwenîşanderan li Sûriyê bike, bi heman şêweyê ku desthilatdarên Rojavayî dijî rejîma Muamer Qedafî didin meşandin.

Wezîrê Derve yê Hollanda, Uri Rosenthal di wê derbarê de got: "Hollanda her ji destpêkê daxwaz kiriye ku peyameke siyasî ya tund ji rejîma Sûriyê re bê şandin" ku di wê peyamê de wek wezîr dibêje "behsa redkirina tundûtîjiyê û rêdayîna medya cîhanî bo çûna wî welatî" bê kirin. Wezîrê Hollandî di heman demê de dibêje welatê wî dijî bikaranîna hêza leşkerî li himberî Sûriyê ye, ji ber ku ev "wê bibe sedema dirustbûna nearamiyê li hemû navçeyê."

Almanya: Biryarek nû derbarê penaberan de

# Ji bo şûndestandina mafê penabertiyê şert hene

**Koln (Rûdaw) -** Dadgeha Îdarî ya Federal (Bundesverwaltugsgericht) di 1'ê Hezîranê de serlêdana Kurdekî penaber ê li Almanyayê mafdar dît û biryara Daîreya Koçber û Penaberiyê ya Almanyayê ji bo paşvestandina mafê penaberiyê ji wî penaberê Kurd rawestand û doz dîsa li Dadgeha Îdarî ya Bilind (Oberverwaltungsgericht) vegerand.

Li gor biryara Dadgeha Îdarî ya Federal divê dadgehên Almanya metirsiyên pêşerojê li ser jiyana penaberan li ber çavan bigrin, dema ku ji ber başbûna rewşê li welatê ku penaber jê hatiye, mafê penabertiyê ji penaber bê standin. Dadgeh balê dikşîne ser wê yekê ku ne girîng e ka kesekî mafê penaberiyê ji ber zext û muameleyên xirab li welatê xwe standiye, an jî ji ber kar û xebata xwe ya ku piştî derketina xwe ji welatê xwe li Almanyayê kiriye. Li gor dadgehê ya girîng ew e ka hê jî metirsiya muameleyên xirab ligel penaberekî, di dema paşveşandina wî de, hê jî didome an na. Eger ew metirsî hê jî bidome, li gor biryara Dadgeha Îdarî ya Federal, wê demê paşveşandina penaberekî nikare pêk were.


Dadwerên Dadgeha Bilind a Federal

Dadgeha Îdarî ya Federal ji ber doza Kurdekî penaber ê ji Bakurê Kurdistanê civiya. Penaberê ji Bakurê Kurdistanê ji ber karê xwe yê siyasî li Almanya mafê penabertiyê wergirtibû. Lê bi sedema ku rewşa mafê mirovan li Tirkiyê hatiye guhetin û ew kesê penaber di rewşa paşveşandinê de wê ji ber karê xwe yê siyasî li Almanyayê rastî ti zextên ciddî neyê, Daîreya Koçber û Penebriyê ya Almanyayê di sala 2008'ê de mafê penaberiye ji wî penaberê Kurd standibû. Îtîraza penaberê Kurd ji aliyê Dadgeha Îdarî ve hatibû redkirin, lê Dadgeha Îdarî ya Bilind (Oberverwaltungsgericht) penaberê Kurd bi sedema ku garantiya parastina mafê wî tune, mafdar dîtibû. Li ser îtîraza biryara Dadgeha Îdarî ya Bilind ji aliyê Daîreya Koçber û Penaberiyê, doz çû ber destê Dadgeha Îdarî ya Federal û wê dadgehê piştî têbîniyên xwe doz dîsa li Dadgeha Îdarî ya Bilind vegerand. Dadgeha Îdarî ya Federal biryar da ku tenê bi şertê ku guherînên bingehîn li welatekî rû dabin û rewş berdewam baş bûbe, û ne tenê ji bo demekê, wê gavê şûndestandina mafê penaberiyê rewa ye, lê îspatkirina van guhertinan dikeve stûyê Daîreya Koçber û Penaberiyê.

Bi vê biryara Dadgeha Îdarî ya Federal, pîvanên şûndestandina mafê peneberiyê jî hatin guhertin. Berê ji bo şûndestandina mafê penaberiyê şert ew bû ku penaber bi îhtimalek mezin dîsa rastî wan muameleyan nebe ku bûn sedema reva wî ji welatê wî. Lê li gor biryara nû, şertê paşvestandina mafê peneberiyê ew e ku rewşa li welatê penaber di astekî bilind de, yanî berbiçav û bingehîn, hatibin guhertin û ji ber guhertinên siyasî îhtimala binpêkirina mafên kesê penaber li welatê wî nemabe. Bi kurtasî divê hemû sedemên ku bûbûn sedema dana mafê penaberiyê rabûbin û di pêşerojê de jî divêîhtimala paşvevegerandina wan sedeman neyê xuyakirin.

## DMME penaberekî Kurd mafdar dît

### Yûnanistan bi 15.000 Euro tezmînatdayîn hat cezakirin

**Strasbourg (Rûdaw) -** Yûnanistan ji ber siyaseta xwe ya li hemberî penaberan dîsa ji aliyê Dadgeha Mafên Mirovan ya Ewrûpayê (DMME) hat rexnekirin. Sêşema borî (07.06.2011) dadgehê penaberekî Kurd ji Bakurê Kurdistanê mafdar dît û Yûnanistan bi 15.000 Euro tezmînatdayîn ceza kir. Wekî sedema biryarê jî, dadgehê rewşa xerab li du kampên penaberan li Yûnanistanê nîşan da, ku ji aliyê dadgehê ve weke "muameleyên xirab ên qedexe" hatin hesibandin. Li gor dadgehê, bi daxwaza paşveşandina wî penaberê Kurd bo Tirkiyê, Yûnanistanê Peymana Mafê Mirovan a Ewrûpayê jî binpê kiriye. Li gor biryara dadgehê, ew derfet ji bo penaberê Kurd nehatiye dayîn ku nerazîbûna xwe li hemberî awayê bicîhkirina xwe li kampê nîşan bide.

Dadgeh bibîr dixe ku îmzekirina Peymana Mafê Mirovan a Ewrûpayê ji aliyê Tirkiyê ve têr nake ku destûra paşveşandina wî penaberî bo Tirkiyê bê dayîn. Dadgeh balê dikşînê ser rewşa penaber û dibeje ku wî bi belgeyan îspat kiriye ku beriya ew di rêyên neqanûnî re derbasî Yûnanistanê bibe, ew di girtîgeheke Tirkiyê de hatiye îşkencekirin û ji ber vê sedemê metirsiyek ciddî heye ku eger ew penaber bo Tirkiyê bê şandin, ew dikare dîsa rastî îşkenceyê were.



# Şerê Kurd û polîsên Fransa

**Parîs (Rûdaw) -** Li du bajarokên nêzîkî Parîsê di navbera polîsên Fransî û jimareyek xwepêşanderên Kurd de pevçûn derket.

Êvara roja 5'ê Hezîranê li herdu bajarokên Villiers le Bel û Evry polîsên Fransî êrişî du komelên çandî yên Kurdan kirin ku bi nêzîkbûna wan a PKK'ê tên tewabar kirin û 6 Kurd binçav kirin. Li gor berdevkê Wezareta Navxweyî ya Fransayê, Perre-Henry Brandet, ew herdu komelên Kurdan "navendên pêkanîna kiryarên terorîstî" bûne û ev çend mehan di bin çavdêriyê de bûne. Wî berdevkî di daxuyaniyek çapemeniyê de ragihand ku "serdegirtin û binçavkirin bi fermana dadgehê pêkhatiye û operasyon bi şêweyekî qanûnî birêveçûye."



Dema ku polîsan xwestin wan kesên binçavkirî bibin, ku çend kesên naskirî û nêzîkî PKK'ê jî di nav wan de bûn (Nedim Seven, Bulent Atmaca, Gulay Aydemir û Rahmî Arica), hejmarek xwepêşenderan nerazîbûnê xwe nîşan dan û rê li polîsan girtin û di navbera wan û polîsan de şer û pevçûn derket. Di vê derbarê de berdevkê Wezareta Navxwe got: "Hêzên polîsan bi ti şêweyekî hewla provekirina xelkê nedaye. Lê rêlêgirtin û êrişkirina polîsan wiha kir ku rewş bighijê astekê ku hêz bê bikaranîn."

Herçiqas heta niha ti agahiyek derbarê ziyan û hejmara birîndaran di wan pevçûnan de tune, lê li gor zanyariyên Rûdawê xwepêşanderen Kurd ji bo demekê rêyên hatinûçûnê girtin û li gelek cihan agir vêxistin. Polîsan ji bo belavkirina xwepêşanderan 3 helîkopter bikaranîn.





Wêne: Rûdaw

# Fortuna Kurden rêwiyê Kolnê ye

**Alan Ken** Berlîn

Ji bo tevlîbûna 14. Festîvala Mazlum Dogan a Çand û Sporê li Berlînê Tûrnovaya futbolê hat lidarxistin. Tûrnovaya ku 16 tîmên futbolê ên amator tê de leyîstin, Fortuna Kurden şampiyoniyê bidestxist.

Ji bo tevlîbûna 14. Festîvala Mazlum Dogan a Çand û Sporê li her deverên Almanya Tûrnovayên futbolê yên herêmî tên li darxistin. Di vê çarçovê de li Berlînê jî hefta borî tûrnovaya futbolê hat amadekirin. Tûrnova li ser navê xortê Kurd ê ku ji aliyê polîsên Tirk ve li Bismilê hatibû kuştin, Halîl Îbrahîm Oruç hat lidarxistin. Di tûrnovayê de 16 tîmên futbolê yên Kurdan hatin hemberî hev û bihev re tekoşîn kirin. Herwiha bi sedan sportvan û temeşavanan maçan temaşe kirin. Tûrnova sibehê zû dest pê kir û heya derengiya êvarê jî berdewam kir. Di nav rojê de gelek tîm hatin hemberî hev û ji bo şampiyoniya tûrnovayê beziyan. Germiya rojê jî ev tekoşin bêhtir dijwar kir. Lê di dawiya tekoşînan de tenê 4 tîm man fînalê: Fortuna Kurden, Ahmet Kaya, Fortuna Cîwan û Kurdistan United. Di navbera van her 4 tîman de jî Fortuna Kurden û Ahmet Kaya hatin hemberî hev; di tekoşîna 90 deqîqe de ev her du tîm jî bi ser neketin û kes kesî têk nebir û maç bo 30 deqîqeyan (15+15) hat dirêjkirin. Di vir de jî ti tîm bi serneket û lîstik çû penaltiyan. Di penaltiyan de Fortuna Kurden, tîma Ahmet Kaya têk bir û bû yekemîn. Fortuna Ciwan jî Kurdistan United têk bir û bû 3`mîn a Tûrnovayê. Ev tîm di tûrnovayê de kupaya centilmeniyê girt û Brian Zucker jî bi 11 golan bû kralê golan. Xelata qelevanê yekemîn jî Seydî Aktaş wergirt.

Tîma Fortuna Kurden bi merasîmek taybet kupaya xwe ji deste xebatkarê rêxistina cîwanên Berlinê, Dêrsim Semsûr wergirt. Semsûr li vir axivî û got; "Li bajarek Ewrûpayê beşdariya gelek tîman wek niha serkeftineke mezin e. Divê Tûrnovayên wiha hîn mezintir û bi rêbazên profesyonelî bên lidarxistin."

Tûrnova bi coş û kêfa temeşavanên tîma Fortuna Kurden bi dawî bû.

Dalkurd û Vasalunds tên hemberê hev!

# "Eger em biserkevin dibin şampiyon"

**Swêd (Rûdaw) -** Tîma Kurdên bajarê Swêdê Dalarnayê, Dalkurd pistî 8 maçan niha amadekariya maçeke krîtîk dike ku himberê wê Vasalunds IF yek ji favoriyên lîge ye. Serokê Klûba DalKurdê Ramazan Kizil ji Rûdawê re ragihand ku ev maç gelek girîng e û got, "Eger em biserkevin dibin şampiyonê lîgê û derbasî lîga jor dibin, yan jî em di lîgê de dimînin."

Serokê Klûba Dalkurdê Ramazan Kizil derbarê performansa tîma xwe ya sezona 2011'de agahî dan Rûdawê û got "em di ferqa kêmasiyên xwe de ne." Kizil daxuyand ku jiber futbolvanên wan ên forvet niha ne amade ne ew leyîstikvanên navenda saheyê didin pêş û ji ber vê yekê di pêş de encamên baş nagirin û navenda saheyê jî vala dimîne. Kizil sedemê ne amadebûna futbolvanên forvet jî wiha vegot: "Futbolvanê Swêdî ku me wî ji Lîga Superettan transfer kiribû, di antrenmanan de xwe seqet kir û heta niha jî nekariye bileyîze. Herwiha forvetê ku me ji Nîjerya transfer kiriye ev bû du meh bi pirsgirêkên vîzeyê re mijûl e, deh roj berê giha Swêdê, lê hê jî pirsgirêka wî bi dawî nebûye û wê di maça vê heftê de dîsa nikaribe bileyîze. Me ji tîma netewî ya Bosnayê jî forvetek bi nave Nedîm Xelilo transfer kir, em ji wî hêvî dikin ku serkeftinê bi destbîne."

**"Me 50 pozisyonên golê dît, lê…"**

Ramazan Kizil bi îdia ye ku di vê sezonê de encameke baş bidest bixin û dibêje ku niha ferqa pûanan di navbera wan û tîmên sereke de ne zêde ne. Kizil maça dawî ya li gel Bodense BK FF ku 1-1 bi dawî bû, bibîr xist û got ji serî heta dawî ew fûtboleke xweş leyîstine lê jiber ku tîma himber ketibû parastinê wan gelek pozisyonên golê encam neanîne. Kizil wiha axivî: Me nêzîka 50 pozîsyonên golê bidest xist, lê hemû leyistikvanên himber di ber qeleya xwe de civiyabûn û weke ku dîwarek ava kiribin, li pêşiya golan bûbun asteng."

Serokê Klûbê Kizil tîmên favorî yên lîgê wiha rêz kirin û got ji van yek wê bibe şampiyonê lîgê: Sirius, Umea FC, Väsby United, Vasalunds û Dalkurd. Pûanên tîma Stockholmê Vasalunds IF 15 ne û di tabelelleya lîgê de di rêza 3.mîn de cîh digire, DalKurd jî tevî 11 pûanan di rêza 8.mîn de cîh digire. Mac roja 11'ê Hezîranê di saet 16:00'an de li Dalarnayê di saheya DalKurdê de tê leyîstin.






# Dêrsimiyên Ewrûpayê li Mainzê civiyan!

▶Di festîvalê de ne tenê Dêrsimî hatin cem hev, ji bajar û perçeyên din jî Kurd hebûn

**Alan Ken** Mainz



Wêne: Rûdaw

Bi hezaran Dêrsimî di 3'mîn Festîvala Çanda Dêrsimê de hatin cem hev. Festîval du rojan berdewam kir û gelek cûrên muzîk, şano, panel û çalakiyên din hatin lidarxistin. Namzetê Dêrsimê yê serbixwe Ferhat Tunç jî bi telefonê tevlî festîvalê bû û got, "Me di Dêrsimê de rêwîtiyek hêviyê daye destpêkirin. Divê hûn jî li tevlî vê rêwîtiyê bibin."

3'mîn Festîvala Çanda Dêrsimê îsal li bajarê Amanya Mainzê bi tevlîbûna hezaran kesan hat lidarxistin. Festîval bi slogana "Ebe tarîx, zon û îtiqatê xo, Xoserîya Dêrsimî/ Bi ziman, bi bawerî û bi dîroka Xwe Dêrsimek Xweser" hat organîzekirin. Roja yekemîn çendîn pisporên mijarê li ser kêşeya Dêrsimê panelek li darxistin. Panela yekemîn bi navê "Bengav-Dêrsim û koçberî" hat pêşkêşkirin. Endazyarê avê û ekolojîst Ercan Ayboga, hunermend Kemal Kahraman tevlî panelê bûn û axivîn. Panela "Elewî yan Kizilbaş" de jî Pîr Riza Yagmur, ji Federasyona Elewiyan Pîr Demir Ugurlu, Haydar Mûnzûr, Kemal Kahraman û parêzer Erdal Dogan amade bûn. Piştî panelan jî lîstika bi navê "Kayo Mixenet – Lîstika Xayîn" ji aliyê Alîcan Unlu ve bi kirmackî hat lîstin.



Wêne: Rûdaw



Wêne: Rûdaw

Festîval roja duyemîn jî bi muzik, axaftin û nîşandana fîlman berdewam kir. Kesên ji bajarên Almanya û welatên din hatibûn bi rengên kesk, sor û zer qada festîvalê xemilandin. Keç , xort û zarok bi cil û bergên xwe yên netewî bûn wek sembola festîvalê. Festîval her çixas a Dêrsimiyan bû jî ji çar peçeyên Kurdistanê kes li wir amade bûn. Stranên kurmancî, kirmançkî û soranî ji dika festîvalê bilind dibûn. Di bernemaya festîvalê de hatibû diyarkirin ku wê Selahattin Demirtaş, Ferhat Tunç û Seroka Şaredariya Dêrsimê Edibe Şahin tevlî festîvalê dibin. Lê hat eşkerekirin ku jiber xebatên hilbijartinê nûnerên BDP'ê nekarîne werin. Di festîvalê de siyasetmedar Muzaffer Ayata, parlementerê Eyaleta Hessenê yê partiya çep (Die Linke) Barbara Cardenas, Seroka Die Linke yê Rheilend-Pfalz Angelika Erikson, rojnemavan Dr. Nick Brauns, Parlementera Die Linke ya NRW Hamide Akbayir û gelek kesên din jî axivîn.

### Tûnç: Em neviyên Seyîd Riza ne…

Roja duyemîn a festîvalê bi daxuyaniya komîteya amadekar destpêkir. Di daxuyaniyê de hat gotin ku Dêrsim di dîrokê de xwediyê cîhekî girîng e. "Jiber vê her dem rastê êrîşan û jenosîdan hatiye. Lê Dêrsimiyan heya îro jî li hemberî van êrîşan li ber xwe dane û xwe parastine. Wê ji vir û şûnde jî çand û zimanê xwe biparêzin." Ferhat Tunç ê ku nehatibû festîvalê bi telefonê tevlî bû û got wan rêwîtiyek hêviyê destpê kirine. Tunç di axaftina xwe de got wan îro li di Dêrsimê bi deh hezar kesan mîtîngek mezin çêkirine û wiha dom kir: "Belkî di dîroka Dêrsimê de kombûna herî mezin bû. Ji bo 12 Hezîranê ti tirsa me tune. Ji bo azadiya Kurdan em di demek girîng de derbas dibin. Em dixwazin ev şerê ku 30 sal in berdewam dike rojeke bê bi dawî bibe. Hewldan û tekoşîna me ev e." Ferhat Tunç, di axaftina xwe de CHP û namzetê wê Kamer Genç jî rexne kir û got "Ew dijminên Dêrsimê ne. Em jî neviyên Seyîd Riza, Alîşer û birayên Mazlum Dogan û Zîlanê ne."

# Çopî dixwaze navberekê bide karê xwe

**Hewlêr (Rûdaw) -** Ev demek dirêj e ku hunermend Çopî bi albûmeka meqaman ve mijûl e û got: "Ez dixwazim piştî belavbûna vê albûmê demekê rawestim."

Hunermend Çopî Feteh ji Rûdawê re da zanîn ku ev demek dirêj e bi amadekariyên albûma xwe ve mijûl e û tevahiya wan stranan ji meqaman pêktê. "Ji ber ji despêka karê min ê hunerî ve ji meqaman hez dikim. Min hewl daye ku bi hemû awayan meqaman bêjim."

Ew CD'ya hunermend Çopî bi navê 'Şara' ye û ji 12 stranan pêktê. Çopî dibêje: "Min bi hemû awayan meqam gotiye. Di vê CD'yê de cûreyê meqamên wekî yên Hewlêr, navçeyên Behdînan, Hewreman û Kerkûkê hene." Çopî wiha dirêjî da axaftinên xwe: "Min çend meqam gotine û bi dengê hunermendên resen ên wekî Heme Salih Dîlan, Elî Merdan û Mişko hatine gotin. Herwiha min ligel van heyranek jî gotiye. Bi awayekî giştî min hewl daye karekî bikim ku hemû navçeyên Kurdistanê bigre nava xwe."

Ev albûma Çopî wê ji aliyê beşa hunerî ya Vîn TV ve bê çap û belavkirin. Çopî got: "Ez dixwazim piştî belavbûna vê albûmê demekê rawestim, ji bo bi awayek baş li ser albûmeka stranan bixebitim. Tevî ku min plan daniye û ligel çend hunermendan ji bo danîna awaz û gotinan axaftiye, lê ez lez nakim. Dibe ku bi bêhnek dirêj û hûrîtiyek zêde ji bo albûma xwe bixebitim."



# Şêrko Bêkes pir dilteng e

▶Şaşitiya mezin anîna nimêja înê ya bo Sera bû.

▶Rawestandina xwepêşandanan karek pir xirab bû.

▶Ez ji helbestên min ku ji bo Barzanî, YNK û xwepêşandanên Silêmanî nivîsandine, ne poşman im.

**Kawa Şêx Ebdullah**
Silêmanî

Helbestvanê Kurd ê navdar Şêrko Bêkes di nav avahiya Dezgeha Serdem ku li kolana qerebalix Salim temaşe dike, ji Rûdawê re axivî. Şêrko Bêkes derbarê xwepêşandanên li Silêmanî, bêdengkirina wan a bi hêzê, rewşa niha ya Silêmanî tiştên balkêş vegot, lê herwiha got: "Ez ji her tiştekê bêzar im û hêza min a hevpeyvînê nîne."

Berhema herî dawî ya Şêrko Bêkes helbesta bi navê "Êsta kiçêk nîştîman me" ye û biryar e di demek nêzîk de li kanala NRT û bi dengê xwe belav bike. Derbarê wê berhemê de got: "Tişta ku ev berhema min ji hemû berhêm din cûda dike, ew e ku êdî nîştîman û meseleyên pîroz, bi pîrozî namînin."

Serokkomarê Îraqê Celal Talabanî û ragihandina YNK'ê nasnaveke "Helbestvanê mezin ê gelê me" li Şêrko Bêkes kirine. Herwiha teksta marşa YNK'ê ya bi navê "Meşxanî şorişî nwêy emcare" ji aliyê Bêkes ve hatiye danîn. Bêkes di vê hevpeyvînê de dibêje, ew qet ji wê vehunadiyê û helbestên din ên ku berê nivîsandine ne poşman e; "Di wê qûnaxê de ew hest û giyanê min bûn. Ez ji helbesta 'Bo Barzanî' ya di şoreşa Îlonê de heta helbesta dawî ya min bo xwepêşandanên Silêmanî nivîsandî ne poşman im. Ez xwe xwediyê wan dibînim, her yek di çarçoveya dem û serdema xwe de ye."


Wêne: Rûdaw

### "Bawer nakim opozisyon li pişt xwepêşanderan hebe"

Lê rexne li helwesta YNK'ê ya ji 19'ê Nîsanê û piştre a li beramberî xwepêşandaran, dike: "Ez dostê nêzîk ê serkirdeyên Kurd im, ev nayê wê wateyê ku ez ji gel qut bibim. Ez hemû daxwazên gel rewa dibînim, ez dizanim çend dil şkestî û dilteng in. Bê dengkirina bi vî awayî karek pir xirab bû li gel xwepêşanderan hat kirin."

Herwekî çawa çend caran li Sera di dema xwepêşandanan de, helbest û gotar xwendiye, niha Şêrko Bêkes li ser wê yekê mikûr tê ku xwepêşander pal dabin û dûr dibîne ji bo mana xwepêşanderan li ser cadeyan, opozîsyon li pişt paldana wan be.

"Derbarê xwepêşanandanan de gelek kêmasiyên opozîsyonê hebûn. Li Dergehê Sera nimêja înê kirin yek ji wan şaşitiyan bû, lê ez nebûna gotarên Îslamiya siyasî li Sera bilind dinirxînim. Opozîsyon ne li pêşiya kêmasiyan e, lê ne ew in xelkê pal didin ku nerazîbûna xwe bînin ziman."

**Talabanî jî wekî Barzanî û hemûyan daxwazên xwepêşanderan rewa dît. Di dawî de hat dîtin ku çi li xwepêşanderan kirin, cihê diltengiyê bû û qet pêwîst nedikir bi vî awayî lê bê.**


Wêne: Rûdaw

### "Li kû derê tûndî hebe ez li himberê wê me"

Şêrko Bêkes xwe wekî dostekî nêzî serkirdeyên Kurd û bi taybet jî Celal Talabanî dibîne. Li avahiya Dezgeha Serdem û odeya berfireh a tijî qenefe û pirtûk, wêneyekê xwe û Talabanî di nava camê de hilawistiye. Herdu bi por û simbêlek ji niha reştir diyar dikin. Derbarê helwestên Talabanî yên derbarê xwepêşandanan de dibêje: "Ji xwe wî jî wekî Barzanî û hemûyan daxwazên xwepêşanderan rewa bi nav kir. Di dawî de hat dîtin ku çi li xwepêşanderan kirin, cihê diltengiyê bû û qet pêwîst nedikir bi vî awayî lê bê. Li kû derê şiddet hebe, ez li dijî wê yekê me."

Şêrko Bêkes di ciwaniyê de endamê Komeleya Azadî, Jiyanewe û Yeksaniya Kurd (KAJÎK) bû, sala 1959'ê hatiye damezirandin û piştî hilweşîna şoreşa îlonê bi dawî hat. Herwiha Şêrko Bêkes tevlî şoreşa îlonê bûye û piştre tevlî refên YNK'ê bûye. Ji bo YNK'ê û serkirdeyên wê gelek helbest nivîsandiye.

### "Ez ê li Serdem bimînim"

Dezgeha Çap û Pexşa Serdem cotmeha 1998'ê de hatiye damezirandin. Şêrko Bêkes ji wê demê ve serokê wê dezgehê ye û got: "Ez niha ji her tiştekê bêzar im. Ne ez tenê bi wî awayî me, belkî rewşê piraniya me bêzar kiriye. Lê carê ez ji Serdem bêzar nebûme. Me projeya xwe heya vê derê aniye û divê em li gel bimînin."

Bêkes derbarê dest jê berdana postê rêvebirin û serokatiya Serdem de, bi eşkere ragihand ku niha li holê fikrek wisa nîne ku kesek din ji bo cihê wî hatibe destnîşankirin; "Dezgeh û Civat li ser xebata xwe berdewam in. Hê jî behsa wê yekê nehatiye kirin ku ez dest ji wê postê berdim û kesek din cihê min bigre, lê pêwîst e her ev yek bê kirin û kesek ji bo serokatiya Serdem bê destnîşankirin. Heta niha ez mame û ez ê bimînim."

### "Wesiyeta min nayê bicîkirin"

Sala par Şêrko Bêkes di hevpeyvînekê de gotibû, "eger ez mirim, min li parka Azadî ya Silêmanî veşêrin." Herwiha gotibû, "ez dixwazim çi keç û kurên evîndar hatin wê parkê, bên nêzî gora min." Lê berpirsên şaredariya Silêmanî li ser bilind nirxandina kesayetî û derbazbûya Şêrko Bêkes re ragihandibûn, "ev daxwazeke berevajî yasayên şaredariyê ye." Lewra çênabe ev wesiyet bê cîbicîkirin.

Şêrko Bêkes li ser vê yekê got: "Ez li ser wê wesiyeta xwe berdewam im, lê ez dizanim nayê bi cih anîn. Park û baxçe ne cihê veşartina miriyan in, eger ez li wê derê bêm veşartin, wê mirovên din jî daxwaz bikin ku li wê derê bên veşartin û wê bibe goristan."

---

**Hekîm Sefkan**

## Çavnebarî û zikreşî



Dibe ku navên cuda ji vî hestê nebaş re hene, lê ya girîng ew e ku ew hestekî nebaş e, mirovan digihîne radeya kuştinê. Li vir armanca min ne danasîna vî hestî ye, lê belê ji ber ku bi mijara min ve girêdayî ye, min ew nav li jorê danî.

Roja 21'ê Gulanê, bernameyeke min li salona Şaredariya Akdeniza Mêrsinê hebû. Rêwîtiyeke tije hest bû. 10 saet ji bo xwendina rojnameyan têrê dikir ku ez hestên Tirkan li hemberî Kurdan nasbikim. Jixwe ez nabêjim em hemû, lê piraniya Kurdan, zanin ka Tirk çawa nêzîkî me dibin. Lê pêvajoya hilbijartinan û helwestên Kurdan, hikûmet, çapemenî û jiwanbawerên tirk serûbinî hev kirine. Kîna wan deh qat bûye. Hîn di provaya muzîkê de bûm, qereçiyên tirk zarok kirin behane û êrîşî Kurdan kirin, 30 birîndar kirin û Kurdek jî kuştin. Me bernameya derve rawestand: Ji ber Kurd, bêyî ku bizanibin sedem çi ye, ki ye yê kuştî, hemû herikîn berbi wê taxa ku pevçûn lê bûye, konê çareseriyê (ku ev demeke weke çalakiyeke sivil hatiye vegirtin) vala ma. Ji nobedaran pê ve çend jin û kal mabûn. Piştî bernameya salonê, divabû li kon jî bernameyek bihata pêşkêşkirin, lê ji ber meseleya cenaze ew hat îptalkirin, lê dîsa jî em çûn serdana wan.

Di çend saetên de li Mêrsinê, pişt re jî li Stenbolê, min famkir ku cara yekemîn e Kurdên Bakur tenê bûne du perçe. Heta niha ew deh-bist perçe bûn. Ya Kurd e, welatparêz e, piştevanê azadiya pirsa xwe ye, yan jî dûvik û kurtêlxurê AKP'ê ye. Ji bo ku ji mijara xwe dûr nekevim, mebesta min li vir rojnamevaniya elektronîk a Kurd e, site û malperên Kurdan, bi taybet ên ku li Ewrûpayê weşanê dikin. Bi yek gotinê, piştî min ew yekîtiya Kurdan vê carê dît -di salê de carekê, du caran diçim Tirkiyê- dema min gotarên siyasetmedarên Kurd, yan jî "şîroveyên" li bin nûçe û gotaran xwend, min naskir ku ya wan tenê tiştek e, ew jî çavnebarî û zikreşî ye. Di demekê de ku hemû çapemeniya Tirk, bi çep û rastên xwe, bi "oldar" û "ateistên" xwe, dijberiya Kurdan dikin, vê peymana wan reş dikin, li şûna piştgirtinê, "malperên Kurdan", "siyasetmedarên Kurd", mîna ku bi devê AKP'ê diaxivin, nikarin vê peymana Kurdan daqurtînin. Zikreşî yan jî çavnebariya Tirkan tê famkirin, ji xwe mirov ne li benda tiştekî din e, lê ya Kurdan?

Ez bawerim ku ew kesên xwe rojnamevan yan jî siyasetmedar hesab dikin, ku carekê herin serdana wan jin û mêrên li bin wan konan, herin serdana hersê partiyên Kurd li Tirkiyê, wê nasbikin ka ew çiqasî ji rastiya Kurdan dûr in. Vê carê hinekî ji çandê dûrtir çûm, lê zikreşî ji çandeke me ye!

Namzetê Eniya Ked, Azadî û Demokrasiyê Şerafetîn Elçî:

# Heta Kemalîzm hebe çareserî çênabe

Namzetê Amedê yê ku BDP piştgirîyê didiyê, Şerafettîn Elçî, destnîşan kir ku heta ji makezagona Tirkiyê "tirkbûn" û "Ataturk" dernekeve, pirsgirêka Kurd çareser nabe û demokratîkbûn pêk nayê. Elçî eşkere kir ku ji bo Kurdan modela herî baş a rêveberiyê federasyon e.

Namzetê Amedê yê Eniya Ked, Azadî û Demokrasiyê û Serokê Giştî yê KADEP'ê Şerafettîn Elçî derbarê çareseriya pirsgirêka Kurd, hilbijartinên 12'ê Hezîranê, makezagona nû, 15'ê Hezîranê û Ocalan de tiştên girîng gotin.

**Derbarê şermezarkirina Serokwezîr Erdogan a hatina Amedê de dixwazin çi bêjin?**

Ti bangeke me ya şermezarkirinê çênebû. Ev nerazîbûneke spontane ya gelê me bû. Ji ber ku gelê me serokwezîr weke berpirsyarê van zext û zordariyên li ser xwe dibîne. Ji ber vê yekê jî li hemberî hatina wî camêrî nerazîbûn nîşan dane.

**Behsa projeyan kir...**

Serokwezîr ji bo ku di rûpelên dîrokê de cih bigre, behsa van projeyên dîn dike. Hewceyî van tiştan nake. Eger serokwezîr dixwaze di rûpelên dîrokê de cih bigre, bila pirsgirêka Kurd çareser bike. Ji ber ku eger ev pirsgirêk çareser bibe, wê serê Tirkiyê ji belayan xilas bibe û wê pêşiya Tirkiyê vebe. Tirkiye wê li cîhanê bibe welatekî pêbawer. Di şûna van projeyên dîn de, bila serokwezîr piştî hilbijartinê fikr û ramana xwe di ber çav re derbas bike. Bila hewl bide vê pirsgirêkê çareser bike. Em dixwazin di çareseriyê de piştgirî bidinê. Bes bila bi niyeteke baş nêzikî vê meseleyê bibe. Bila jidil be. Bila Kurdan nexapîne. Bila daxwazên mafdar ên gelê Kurd bi cih bîne.

**Daxwazên mafdar ên Kurdan çi ne?**

Nasnameya me ya neteweyî kurdbûn e. Ez ne perçeyek ji miletekî din im û ne jî binematla miletek im. Yanî em ne beşek Tirk, Ereb û Farisan in. Em weke gel beriya van gelan hebûn. Em dixwazin nasnameya me ya neteweyî bê naskirin û bi awayeke zagonî bê mîsogerkirin. Tişteke din jî zimanê dayikê ye. Zimanê dayika me kurdî ye. Em dixwazin bi zimanê dayika xwe bijîn. Ji bo parastin û pêşvebirina kurdî jî tekane rê perwerda bi kurdî ye. Ev daxwaza me li hemû cîhanê jî weke prensîb tê naskirin. Di Peymana Mafên Zarokan a Neteweyên Yekbûyî (NY) de tê gotin ku "Mafê her zarokekî heye bi zimanê dayika xwe perwerde bibîne". Ev mafê ku ji hemû zarokên cîhanê re tê naskirin, divê ji zarokên Kurdan re jî bê naskirin. Daxwaza me ya sêyemîn jî ev e; em dixwazin li herêma xwe, xwe bi destê xwe birêvebibin. Em ê rêveberên ku wê me birêvebibin, bi hilbijartinê bînin ser text.

**Walî û qeymeqam jî wê bi hilbijartinê bên?**

Hemû, hemû. Îdareya hemû welatên pêşketî yên li cîhanê bi vî awayî ye. Avantajên pir mezin ên rêveberiyên herêmî hene. Ti kes nikare bi qasî te derdê te bizanibe. Hemû kesên ku hinek aqil di serê wan de hebe, dizanin ku rêveberiyên herêmî sîstema tiral a navendê ji holê radike. Dema ku gel xwe li bajarên xwe birêvebibe, wê çaxê hemû lêçûn kêm dibin û hem jî kar û bar zûtir tên meşandin. Gel wê rêveberên xwe jî bi vî awayî bikaribe kontrol bike. Ev ne perçekirin e. Dewlet dîsa yek dewlet e. Sînor tên parastin. Ev tenê modeleke rêveberiya hundirîn e.

**Lê di nava civaka Tirk de ev yek xelet tê fêmkirin...**

Em ê ji gelê Tirk re wiha bêjin; eger tu bi nasname û zimanê xwe, xwe birêve bibî, tu bibî şirîkê rêveberiya navendî, wê çaxê hewcedarî bi dewletê tune ye. Di vê serdemê de êdî pergalên teng jî holê radibin. Dewletên bi hêz ên ku bi sedan sal in serbixwe ne, niha di bin sîwanên mezintir de yekîtiya xwe ava dikin. Yekîtiya Ewrûpayê mînaka herî berbiçav e. Sînor rakirin. Pereyê ku sembola desthilatdariyê ye, rakirin, pereyekî hevpar çêkirin. Di pêşerojê de wê artêşeke hevpar jî ava bikin. Bi vî awayî artêşa neteweyî namîne. Niha di nava dewleteke wiha de Kurd ger zilm û zordarî nebînin, neyên zindankirin, ji jiyana xwe kêfxweş bin, çima veqetin? Lê tu tim li Kurdan bixî, wan biçûk bixî, neçarî derketina çiyê bikî, birçî û xizan bihêlî, ew gel helbet ê bixwaze veqete. Ev hincet in.

**Ger hûn bên hilbijartin, hûn ê dîsa di BDP'ê de bin?**

Ev blok e. Ev tifaq pir muhîm e. Gelê me bi vê tifaqê pir kêfxweş bû. Ti wateya ku em vê sererastbûnê xira bikin tune ye. Lê piştî hilbijartinê em ê careke din rûnin û bernameya xwe di ber çavan re derbas bikin. Em ê bi bernameyeke baştir vê tifaqê berfirehtir bikin û bidomînin.

> **Piştî hilbijartinê em ê careke din rûnin û bernameya xwe di ber çavan re derbas bikin. Em ê bi bernameyeke baştir vê tifaqê berfirehtir bikin û bidomînin**

**Hûn dikarin weke parlamenterê KADEP'ê dewam bikin?**

Em ê wê binirxînin. Ya girîng ew e em li wir bi awayeke hevpar tevbigerin. Em ê ji bo vê hewl bidin.

**Daxwaza we ya federasyonê dewam dike?**

Belê dewam dike. Ji ber ku li gorî rewşa Tirkiyê rêya herî baş a parastina mafên Kurdan sîstema federatîf e. Em zêde guh nadin navan. Em ê piştî hilbijartinê bi hevalan re rûnin û biaxivin, em ê binirxînin. Li vir a girîng ew e ku gelê me xwe bi xwe bikaribe birêve bibe. Ya girîng ev e; gelê me wê bi kîjan rê û rêbazê baştir xwe birêve bibe? Lê ez weke takekes, federasyonê diparêzim. Ev nêrîna min di nava me de nabe sedema veqetînê.

**Ocalan 15'ê Hezîranê îşaret kir...**

Dîroka ku Ocalan dibêje, ne dîrokeke wisa ye ku gavên berbiçav bên avêtin. Lê birêz Ocalan dixwaze hêviyek bê dayîn, ji bo çareseriyê çirayek bê vêxistin. Dixwaze soza çareseriyê bê dayîn. Ez zêde guh nadim xirecira di dema hilbijartinê de. Êvara hilbijartinê serokwezîr wê vê helwesta xwe ya har deyne aliyekî.

**Elçî "bi fermana Ocalan" tevdigere?**

**Derdorên nêzî KADEP'ê hatine wa ya tifaqê rexne kirin. Gotin "bi fermana Ocalan" tevdigere. Ev yek rast e?**

Divê mirov guh nede wan însanan. Ew bi xwe re jî ne di nava aştiyê de ne. Nizanin çi dixwazin. Yekîtiya Kurdan daxwaz û hesreta herkesî bû. Heta îro wan jî ev tişt dixwest. Lê hûn çi dikin bikin, hûn nikarin van mirovan kêfxweş bikin, tatmîn bikin. Psîkolojiya hin mirovan ne di cih de ye. Ez guh nadim gotinên van kesan.

**Serokwezîr çi bêje, hûn ê vê weke hêviyeke çareseriyê bibînin?**

Dikare bêje ez ê pirsgirêkê çareser bikim. Berê jî got ez ê çareser bikim, lê niha dibêje pirsgirêkeke wiha tune ye. Xeletiyeke pir mezin kir. Vegereke pir xelet kir. Ev taktîkeke hilbijartinê ye. Armanca wî ew e ku MHP'ê di bin bendê de bihêle. Serokwezîr piştî hilbijartinê divê derhal vê helwesta xwe biguherîne. Pêwîst e careke din pirsgirêkê qebûl bike û ji bo çareseriyê îradeya xwe nîşan bide.

**Di makezagona nû de hûn dixwazin serê pêşî kîjan peyv, xal biguhere?**

Pêwîst e peyva "tirk" bê rakirin. Di makezagona nû de divê ne derbarê tirkbûnê de, ne jî derbarê pîvan, înkilabên Ataturk de ti peyv tune bin. Ji ber ku bi dilsoziya bi pîvan û înkilapên Ataturk ti caran pirsgirêka Kurd çareser nabe. Jixwe sedem û çavkaniya vê pirsgirêkê înkilap û pîvanên Ataturk in. Divê dewlet dev ji wê ferasetê berde, xwe ji wê ferasetê bişoyê. Ji ber ku ew feraset bi temamî paşverû ye. Ew feraset feraseta dewleteke otorîter û totalîter e. Ev modela serdema faşîzaniyê ye. Wê demê li cîhanê ferasetên faşîzan desthilatdar bûn. Hîtler û Mussolonî jî ji wan pêşengan bûn. Yanî modela Kemalîzm a li Tirkiyê versiyona faşîzmê ya li Tirkiyê ye. Êdî ew serdem hate girtin. Serdema me serdema pirçandî û pirengiyê ye. Ji ber vê yekê divê makezagoneke demokratîk bê çêkirin.




Wêne: Rûdaw

*Hevpeyvîn: Bawer Çem Amed*

# Şîrketa Palînor bi milyonan dolarê hevwelatiyên Kurdistanê xwarin

▶Şarezayek di warê ÎT'î de: Şîrketa Palînor xeyalî ye û çend kesên Îranê bi rêve dibin.

▶Bi rêya şîrketek xeyalî, sermayeya Mikaîl Îbrahîm ji 5 hezar dolar bû 3 milyon dolar.

**Hêvîdar Ehmed** Hewlêr

Şîrketa Palînor bi milyonan dolarê hevwelatiyan xwariye û pereyê ti kesî venagerîne. Şarezayekê di warê Teknolojiya Zanyarî (ÎT) de jî dibêje: "Ew şîrket xeyalî ye." Kesên ku pere dane wê şîrketê gefa wê yekê dixwin ku eger pereyê wan ne vegerînin, wê gilî bikin. Rêveberê Polîsên Hewlêr jî dibêje; çi kesê giliyê wê şîrketê bike, em ê lipeyçûnê jê re bikin.

Mahîr Sadiq hevwelatiyek ji Zaxo ye, karker e, ji bilî zêrên hevsera wî ku bihayê wan 7 hezar dolar bû, ti sermayeyek din nebû. Dema hevalek nêzî wî jê re got ku were li Şîrketa Palînor pişkekê veke, tu wê di demek kin de bibî xwediyê pere, otomobîl û xaniyê xwe, ew jî bi wê xeyalê di cih de zêrên hevsera xwe dibe bazarê, difiroşe û pere dide wê şîrketê.

Meha yekemîn 420 Dolar ji wê şîrketê wergirtiye û jê re hatiye gotin ku ev pereyê qezenca pereyê te yê wê mehê ye, lê piştî wê yekê hemû pereyên wî çûne.

### Di sala 2008'ê de li Kurdistanê derket

Cara yekemîn di sala 2008'ê de navê wê şîrketê li Herêma Kurdistanê belav bû. Niha kesên ku pişka xwe li wê şîrketê vekirîn û niyeta wan heye ku bibin xwedî sermaye, hêjmara wan ji 1000 kesan derbaz bûye. Li gor zanyariyên Rûdawê li Kurdistanê kesek bi navê Mîkayîl Îbrahîm ku berê Rêveberê Radyoya Zagror û Ajansa Peyamnêr bû, di navbera wê şîrketê û xelkê de bû.

Pirsgirêka wê şîrketê mezin bûye û gihaye Mekteba Civakî ya PDK'ê jî û çend kesan li gel wê mektebê giliyê Mikayîl Îbrahîm kirine. Rêveberê Mekteba Giştî ya Civakî ya PDK`ê Îbrahîm Heme Emîn Axa got: "Heta niha 33 kes hatine gel me û giliyê Mikayîl Îbrahîm kirine. Wan kesan hemûyan nêzî nîv milyon Dolar dane Mikayîl û ji bo li wê şîrketê bibin xwedî pişk."



Wêne: Rûdaw

Mekteba Giştî ya Civakî ya PDK'ê bi nivîsekê roja 3`ê Adara îsal Mikayîl Îbrahîm agehdar kir ku 6'ê Adarê ji bo çareserkirina vê pirsgirêkê serdana wan bike. Derbarê hatina wî ya ji bo navberkarê Şîrketa Palînor, Rêveberê Mekteba Civakî yê PDK'ê dibêje: "Mikayîl ne amade bû dînarekê ji wan mirovan re vegerîne, ji me re got, berî ez bi navê wê şîrketê kar bikim, tenê 5 hezar Dolarê min hebûn. Lê niha sermayeya min gihaye 3 milyon Dolar û mineta ti kesê ji min nîne."

Heme Emîn Axa di dibêje: "Mikayîl zêdetirî 1000 kesan aniye nava wê şîrketê. Me pir hewl da ku hinek pereyê wan mirovan vegerînin, razî bû, soznameyek nivîsî û îmze jî kir, lê piştî rojekê poşman bû."

Şîrketa Palînor tekane şîrket nîne ku li Kurdistanê fêl li xelkê bike. Di salên 80'an de jî du şîrketên xeyalî bi heman awayî li Îraqê derketin û bi sed hezaran pereyê xelkê xwarin.

### Zêdetirî 50 milyon Dolarê Kurdistaniyan çû

Hevwelatiyek ku bi rêya Mikayîl ketiye nava wê şîrketê dibêje: "Min bi tenê 80 kes aniye nava wê şîrketê û niha nêzî 300 hezar Dolarê wan mirovan li gel Mikayîl e. Ez nizanim çi bikim, ji ber wê pirsgirêkê xew û xwarin li min heram bûye."

Ew kes li hêviya wê yekê ye ku rojek ji rojan pereyê xwe werbigire, ne xwest navê wî di rojnameyê de bê belavkirin û got: "Gelek kesan bi karkertiyê pere komkirine û bi niyeta ku dewlimend bibin tevlî wê şîrketê bûne. Lê Mikayîl ew pere xwar. Zêdetirî 50 milyon Dolarê xelkê Kurdistanê xwariye."

### Polîs amadene li pey giliyan de biçin

Rêveberê Polîsên Hewlêr Ebdulxaliq Tel'et derbarê pirsgirêka şîrketên bi vî awayî de got: "Heta niha li gel me ti kesê derbarê şîrketên bi vî awayî de gilî nekirine û eger kesekî gilî bikin, em ê lipeyçûnê bikin."

Dema her kesek biçe nava wê şîrketê, dibe baskekê jora xwe, piştre wî kesî dibe baskê rast û çepê xwe kesan peyda bikin û yên jêra xwe jî bi heman awayî. Kesên ku tevlî wê şîrketê bûne, tenê despêkê hinek pere ji wan re hatine û qaşo ew qezenca wan e. Lê piştre ti pere ji bo wan ne hatiye.

### Li radyo kar dikir

Li gor zanyariyên Rûdawê, piraniya kesên ku tevlî wî karî bûne, kesên rewşenbîr û mamosta ne û di asta serkirdeyên partiyan de jî beşdar bûne.

Xebatkarekê radyoya Zagros ji Rûdawê re got: "Piştî ku Mikayîl dest bi karê wê şîrketê kir, gelek agehdariya wî ji karê radyo û Ajansa Nûçeyan a Peyamnêr çênedibû. Dema ku bi rêya wê şîrketek pereyek zêde kom kir û pereyê wî diyar nebû, xelk dihatin radyoyê û gef lê dixwarin."

Yek ji Serkirdeyên PDK'ê ku xebera wî ji karê Mikayîl hebû, ji Rûdawê re got: "Derxistina Mikayîl a ji radyo û ajansa Peyamnêr ji ber wê pirsgirêkê bû. Ji ber gelek mirovan giliyê wî kirin, lewra biryara rakirina wî derket."

Despêkê wê şîrketê mehane sedî 13'ê pereyê qezencê dida, lê piştre bo sedî 7 kêm kir, piştre sedî 8 û herî dawî jî sedî kir sedî 4'ê qezencê.

Mihemed Sîto şarezayê di warê IT'î de ye û dibêje, şîrketên taybet ji bo bawerîhatina bi wan malperên taybet bi bazirganiya înternetê yên wekî www.bbb.org hene. "Nasîna wan pir hêsan e. Divê mirov gûman bike, çawa bi 1 yan 2 hezar Dolar bi rêya wê şîrketê dibe xwediyê 1 milyon Dolarî. Min li ser înternetê lêkolîn kir telefona wan nîne û malpera wan jî pir sade ye. Derbarê şîrketê ti zanyariyek baş nadin."

## Peymana Şehristanî ligel YE, Herêma Kurdistanê aciz dike

**Selam Se'dî** Hewlêr

Di 25'ê Gûlana borî de Hikûmeta Îraqê, bi nûnertiya Cîgirê Serokwezîr Hûsên Şehristanî, li Brûkselê li gel Komîsyona Yekitiya Ewrûpa bo karûbarên enerjiyê peymanek îmze kir. Li gor wê peymanê, Îraq û YE di warê enerjiyê de dikevin nav peywendiyek kûr. Peyman ji aliyê Komîsyarê Ewrûpa yê bo Karûbarên Enerjiyê Günther Oettinger ve hat îmzekirin.

Hûsên Şehristanî meha borî di hevpeyvînek li gel Rûdawê de ew yek ragihand ku wê dawiya meha gulanê ji bo îmzekirina wê peymanê serdana Komîsyona Yekitiya Ewrûpa ya li Brûkselê bike.

Projeya Korîdora Başûr ji bo veqetandina enerjiyê projeyek Ewrûpî ye û bi taybet jî gaza xwezayî bi hevparî li gel welatên Asya Navîn, Başûrê Efrîqa û Rojhilata Navîn tê encamdayîn. Armanca vê projeyê kêmkirina pişta xwe girêdana Ewrûpa ya bi wê gaza xwezayî ya ji Rûsya di Ukranya re digihe navîna Ewrûpa ye. Wisa tê texmînkirin ku salane ev projeye 45-90 milyar m3 gaz ji Ewrûpa re veqetîne û bi wê yekê jî heta 2020'an nêzî sedî 10-12'ê pêdiviyên Ewrûpa tejî bike.

Li gor çavdêrekî peymana di navbera Îraq û YE'yê de bû sedemê diltengiya Herêma Kurdistanê. Bi baweriya ev çavdêrê ku nexwest navê wî bê eşkere kirin, Şehristanî bi vê pêngavê dixwaze Kurdistanê bide aliyekê.

Li gor zanyariyên Rûdawê, Hikûmeta Herêma Kurdistanê diltengiya xwe ya ji vê peymanê gihandiye Komîsyona YE'yê ya bo Karûbarên Enerjiyê, ji ber ku peyman veşartî ye û bi awayekê hatiye dariştin ku berevajî Sîstema Federalî ya Îraqê ye.

Aliyê Kurd bi niyetin di şend rojên bê de heman pirsê ji Malikî bikin, lê pê naçe ku bersiv bi dilê Kurdan be.

Heta niha ne diyar e wê ev peyman biçe parlementoya Îraqê yan na. Ji ber parlemento û Hikûmeta Îraqê proje yasaya petrol û gazê ne pejirandine û bi yasaya sala 1967'an kar dikin.

Bi baweriya çavdêrê siyasî yê Rûdawê ev peyman "Projeya Nabuko dikuje" û wiha pêdeçû: "Ewrûpî ji bîr dikin ku ev petrol û gaz li Kurdistanê ye û ne li Bexda ye, lewra eger em ne li gel bin, ti tiştek rû nade."

Bi baweriya Dr. Elî Hûsên Belo, Îraq heta 5 salên din jî nikare gaza xwe rêke derve. Ji ber pêwîstiyek zêde ji bo veqetandina elektrîkê heye û ev jî wê 5 salan bajo. Lê Herêma Kurdistanê dikare berî Îraqê gaza xwe ya xwezayî rêke derve.



# Ciwanekî Kurd kete xefika laşfiroşeke Ereb

Dîmen Burhan Silêmanî

Beriya ku bigihe malê, hevjîna wî telefona wî dike û jê re dibêje: "Neyê malê." Lê ew her pêdagir e divê vegere malê. Tişta ku Adil hez nedikir bibîne bi çavê xwe dît: "Jina min bo 4 mêrên Turkmen sema dikir." Êdî pêşçavê Adil tarî dibe û dest bi teqekirinê dike heta ku demança wî vala dibe.

Adil Mehmûd (25) xelkê bajarê Kerkûkê ye. Di maleke feqîr de jiyaye, lê ji ber heval û dostên xirab niha li Çemçemalê di zindanê de jiyana xwe derbas dike.

Adil li Kerkûkê hevaltiya xortekî bi navê Karwan kiriye. Şevekê Karwan wî qaneh dike ji bo derbaskirina demê herin malekê: "Bi şevan li gel hevalên xwe diçûm gazîno. Şevekê Karwan bi pistepist ji min re got îşev tu mêvanê min î û te dibim buhiştê."

### Jina 44 salî: Tirkiye

Buhişta Karwan ji Adil re mala laşfiroşekê bû: "Berî wê şevê, di hemû temenê xwe de min mey venexwaribû û cigare nekişandibû û berê xwe nedabû keçekê. Lê Karwan herdem tişt bi min şêrîn dikirin." Bi dirêjiya rê, Adil di nav gotinên ter û germker ên Karwan de noq bûbû heta ku gihiştin ber wê malê: "Em çûn hewşê, Karwan berbi jêrzemîna malê çû. Jineke 44 salî ya por sor bi navê Tirkiye derket cem me. Dilê min bi tundî lê dida ji ber ew cara yekemîn bû cihekî wisa dibînim."

Karwan ji Adil re gotiye: "Me şermezar neke, wisa xwe nîşan bide ku hemû tiştî dizanî." Adil û Karwan çûne saloneke mezin tenê globên sor pêxistî ne û dûmana cigareyan seranserê jîngeha salonê têk daye û çend keç ku sema dikirin bala amadebûyan kişandiye. Dîmenek ku Adil di xewna şevan de jî nedîtibû.

Di wê şevê de Adil cara yekemîn mey vexwar û mest û serxweş bû. Adil dibêje: "Nizanim çi hat serê min, lê qasî ku zanim dotira rojê Karwan bi telefonê li min geriya û got, Tirkiye ya xwediya mala doh bi şev gazî te dike."

### Tirkiye dixwaze bi Adil re bizewice

Gava Adil diçe cem, Tirkiye jê re dibêje: "Ji bilî te min nehiştiye kesekî din bi min re demê derbas bike, piştî hevjînê min ê berê, tu yekemîn kes bûyî bi min şa bibî, lewma dixwazim te bikim hevjînê xwe û ji van karan dûr bikevim. Her çi serweta min heye dixim bin destê te û xaniyê xwe jî ser navê te tapo dikim û otomobîla xwe jî dide te, tenê em keçan ji xelkê re peyde dikin û hew."

Temahiya otomobîla bilind, xanî û pereyan Adil qaneh dikin, bi ser de jî li ser gotina Tirkiye li ba mela jî mehra wê nabire: "Bi vî rengî ji sala 2008`ê ve li gel Tirkiye weke jin û mêr me dest bi jiyanê kir û herdem min dişand bo nêçîrkirina keçên bêkes û hejar ku dûre me ew dikirin laşfiroş û di davika tora xwe de dilandin."

### Di êvareke buhara 2010`an de, ji bo Adil her tişt diguhere

Adil dibêje şertê di navbera wî û Tirkiye de ew bû: wê ne Tirkiye di hembêza ti mêrekî de razê û ne jî ew li gel keç û jinên din şa bibe: "Da ku Tirkiye wisa neke, ez bi xwe jî ti wextekî nêzîkî wan keçên ciwan nedibûm." Lê di êvareke buhara 2010`an de, her tişt bo Adil diguhere: "Wê êvarê Tirkiye ji min re got, vê êvarê here mala bavê xwe ji ber zêde mijûl im."

Tirkiye pêdagir bû ku Adil venegere malê: "Min got ez ê vegerim, ma ez û te ne mêr û jin in? Got, tu werî ez ê lingê te bişkînim. Êdî bi şev tevî demançê çûm malê. Min dît Tirkiye 4 mêrên Turkmen, ku berpirs jî di nav wan de hebûn, anîne mala me."

Adil li ber wî dîmenî xwe negirtiye ku jina wî di hembêza mêran de semayê bike: "Min demança xwe derxist û teqe li wan kir. Min bi xwe jî nizanibû teqe li kî dikim. Min Tirkiye û mêrekî li wir kuştin, mêrek û semakereke din jî birîndar kirin."

Adil di malbateke Kurd a şeş kesî de li Kerkûkê jidayik bûye. Heta qonaxa 5`ê amadeyî xwendiye û bavê wî di dema proseya azadkirina Îraqê de kêmendam bûye û destekî wî hatiye birîn.

Navbirî niha li girtîgeha Çemçemalê ye û cezayê zindankirina heta hetayê derheqê wî de derketiye.

## Di civîna pênc qolî de jin nebûn!



Hinek kes ji min re dibêjin tu keça mêrekî şoreşgêr û pêşmerge yî çawa li ser van babetên nazik dinivîsî? Gelo keça pêşmerge nabe behsa pirsgirêkên civatê bike? Gelo pêşmerge tenê armanca wan rizgarkirina xaka Kurdistanê bû yan rizgarkirina mirovê Kurd jî bû ji qeyd û bendên civakî heta digihe berhemanîna takeksekî saxlem û jixwebawer ku bikare bi awakî eşkere behsa kêşeyan bike? Azadbûna mirov ji azadiya xakê girîngtir e, çimkî takekesê azad dikare xakê azad bike.

Nivîskarên me yên jin pir in, lê bi baweriya min piraniya wan bi şermînî dinivîsin, pir kêm in ewên destê xwe davên hinek babetên nazik. Ewên behsa mijarên hestiyar dikin, dikevin ber rexne û gotinên hevcinsên xwe, berî mêran. Lewma proseya nivîsînê di nav jinên nivîskar de nekariye gotûbêjên germ di warên edebî û civakî de çê bike.

Hinek ji jinên me yên nivîskar hewl didin di warê siyasî de binivîsin; nivîsen di aliyê kêşeyên civakî zêde girîng nabînin û bi baweriya wan eger di aliyê siyasî de jêhatî bin, dibe ku desthilat wan weke siyasetvan qebûl bike û postekê misoger bikin, lê bûyerên vê dawiyê yên Kurdistanê îspat kirin ku mêjiyê Kurdî û siyaseta Kurdî heta niha jî di wê baweriyê de ne ku kêşeyên vî welatî kêşeyên siyasî ne û pêwendiya siyasetê jî bi jinan re tune. Nexwe zêdetirîn beşdarên bernameyên kanalên desthilat û opozîsyonê tenê mêr bûn, ew ji bo dîtina çareseriyekê bo kêşeyan mijûl bûn û di civînan de jî ti jinek beşdarî nekiriye.

Jinên Kurd divê hinekî wêrektir binivîsin û hewldana çareserkirina wan kêşe û cudatiyan bidin ku ji nirxê wan kêm dikin.

Nabe jin ji axaftinê li ser kêşe û pirsên civakê bitirsin, tenê ji ber ku civaka Kurd wan qebûl bike. Nivîskar divê ji xelkên ji rêzê hestiyartir û insiyatîfîtir be di aliyê pêşkêşkirin û çareserkirina kêşeyan de.

Newel Sadawî ku îro bûye sembola jinên azad li cîhanê, bi şermînî nedinivîsand lê pir bi wêrekî û eşkerebûn dinivîsand. Lewma bazara kitêbên wê heta niha jî germ e û hatine wergerandin ser gelek zimanan. Piştî wê Dr. Fewziye Dirê nivîsara Kiwêtî, Ehlam Mistexanimî û hinek nivîskarên din, bi cesaret dinivîsin û tirsa wan tune ku civak çawa berê xwe dide wan an keçên kî ne, tenê tiştek li cem wan girîng e: Gotina rastiyan, ji bo nifşê wan ên dahatû paşerojeke baş û dabînkirina azadiya ruhî û fîzîkî bo xelkê welatên wan.



# Rojên dawî

**Ahmed Dere**

Qirecireya pêvajoya hilbijartinên li Tirkiyê ketiye rojên xwe yên dawî. Van rojan her partî hemû koz û derfetên xwe bikar tîne. Lê mixabin, rêbazên siyaseta li Tirkiyê pir qirêj in, asta wê pir nizm e û ew naşibe ya ti welatî. Zimanê ku ji aliyê serokên partiyan ve tê bikaranîn ji yê mirovên ku li kolanan dijîn xerabtir e, ligel wan dijûn, komplo û tewanbarî xala herî girîng û ya bitesîr e.

Ji hemû hilbijartinên ku di nava 20 salên dawî de pêkhatî zêdetir, vê carê bala raya giştî bi giranî kişiyaye ser bajarên Kurdistanê. Bi awayeke pir berbiçav, vê carê rola hêza Kurdistaniyan bûye xala herî girîng ya ku wê li ser tevahiya hilbijartinan bandorê çêbike. Lewre, ji demên borî cudatir, vê carê hemû partiyan giraniya xwe dane ser bajarên Kurdan. CHP ya ku ji salên 1995'ê vir ve li Bakurê Kurdistanê pir qels ketibû û nikaribû mitîngan çêbike, di vê pêvajoyê de li hemû bajarên herêmê mitîng lidarxist. Ji sala 1995'ê vir ve, cara yekem e ku MHP li Amedê mitîngê lidardixe.

Rewşa van rojên dawî dide xûyakirin ku wê AKP ji sedî 45 zêdetir dengan bistîne. Ev tê wateya ku ji sala 1956'ê vir ve AKP dibe partiya duyem ku sê caran serhev tê ser desthilatdariyê. Di dîroka Komara Tirkiyê de, ji derveyê Partiya Komarger CHP'ê, heya niha tenê Partiya Demokrat sê caran serhev hikûmet avakiriye. Lewma girîngiya van hilbijartinan ji bo AKP'ê zêdetir e. Qasê ku tê xûyakirin, heya ku careke din li vî welatî hilbijartin çêbibin, wê Recep Tayyip Erdogan bibe serokkomar, ev xeyal û armanca wî û ya partiya wî ye.

Bi arîkariya Kemal Kiliçdaroglu, yê ku jêre dibêjin eslê wî «kurd e», CHP'ê di rêjeya dengên xwe de jî hin pêşketin çêkirine. Wusa diyar e ku wê ev partî li tevahiya Tirkiyê ji sedî 27 heya 32 dengan bigire. Li gorî hewa ku dixuyê, dibe ku MHP di binî rêjeya barajê de bimîne, lê belê eger ew di bin barajê de nemîne, ez bawer nakim ku dengên wê ji sedî 11 derbas bibe. Pir baş dixuyê ku vê carê tenê 2 an jî 3 partî dikarin derbasî meclîsê bibin. Ev jî rewşa antî-demokratîk a Tirkiyê ye.

Çendî BDP weke partî neketibe hilbijartinan jî, li gorî min Kurdên Bakur ji niha ve serkeftinek bidest xistine. Yekîtiya ku di navbera hêzên kurd de çêbûyî, bi tena serê xwe serkeftineke. Eger Bloka Ked, Azadî û Demokrasiyê ji 32 parlementeran zêdetir bişîne meclîsa Tirkiyê, bêguman wê heman serkeftin zêdetir bi wate be. Li gorî ku ez ji niha ve dibînim, wê hejmara parlementerên Blokê di navbera 27-32 de be. Divê were zanîn ku Ahmet Turk, Leyla Zana û Aysel Tugluk wê nikaribin bibin endamên koma BDP ya meclîsê, heya du salan ew ê weke parlementerên serbixwe bin.

# Maddeya 140 miriye yan tê bicihkirin?

## Eger 140 neyê cîbicîkirin destûr tê xitimandin

**Dr. Mehmûd Osman***



Madeya 140'ê yek ji wan madeyên destûrî yên girîng ên Îraqê ye ku divê bê cîbicîkirin. Bi ti awayî xwe jê dûrkirin yan paşguhxistina wê yan dûrkirina wê ji madeyên destûrî yên din nayê qebûlkirin. Ev ne qebûlkirin jî pişta xwe bi hêzeke millî girêdaye. Ev destûr 12 milyon Îraqiyan dengê xwe li ser dane, lewma çênabe ji aliyê lîstekê yan partiyekê bi mebestên siyasî bê redkirin, çimkî ev dibe sedemê binpêkirina mafê wan kesên ku dengê xwe dane vê destûrê. Ewên ku dijî cîbicîkirina vê madeyê ne hê jî ji naveroka tevahî ya madeyê fam nekirine û cemawerên wan jî ewqasî nînin bikarin li pêşber cîbicîkirina wê de bibin asteng.

Serokwezîrê Îraqê Nûrî Malikî di dema wergirtina baweriyê de bo dirustkirina kabîneya hikûmetê de, gotûbêjên zêde li gel Kurdan di vî alî de kir û bi xwe jî got madeya 140'ê divê bi tevahiya xal û bendên wê bê cîbicîkirin, lewma niha divê vê sozê bicih bîne. Li gel vê jî pir girîng e Kurd çavdêriya cîbicîkirina sozên Malikî bikin, bi taybetî yên bi madeya 140'ê ve girêdayî. Ji ber yek ji şertên serekî yên Kurdan ji bo beşdarîkirina di hikûmetê de cîbicîkirina vê madeyê bû. Divê Kurd ji bo wê ya di vê kabîneyê de hewldanên xwe bikin, ev made bê bicihkirin.

Ewên dibêjin madeya 140'ê nayê bicihkirin yan mirî ye yan qediya ye, ew ji nezaniyê wiha diaxivin, çimkî ew madeyeke destûrê ye. Eger ev made neyê bicihanîn destûr tê xetimandin. Eger wiha bibe, bê gûman Kurd wê çaxê li Îraqê gotineke din bikin. Lewma mirina 140 mirina destûrê ye.

** Endamê Fraksyona Hevpeymaniya Kurdistanî li Parlamentoya Îraqê.*

## Divê madeya 140'ê bê sererastkirin

**Umer Cibûrî***



Pirsgirêka me ligel cîbicîkirina amdeya 140'ê tune, ew kêşeyên ku li navçeyên nakokbar hene divê li gor yasa û destûrê Îraqê bê çareserkirin. Nemaze ew kêşeya dîrok, erdnîgar û xelkê ne. Lê bicihkirina wê madeyê bi vê rewş û barê niha kêşeyan kûrtir dike û em nagihin encameke baş, lewma baştir e ev made bi awakî wisa bê çareserkirin ku ji bo bicihkirina wê hemû amade bin û li ser razî bin. Ev jî bi wê ya tê kirin: eger ev made bê sererastkirin. Ji ber bê sererastkirina vê madeyê ti wextekî hemû pêkhateyên Kerkûkê pê razî nabin, herwiha bê guman kêşeyên zêdetir jî jê çêdibin, çimkî Kerkûk jixwe li ser agir e. Eger çareseriyeke demkî yan nîvco bê kirin, ev karesatê diqewimîne.

Bi vî rengî em niha li gel cîbicîkirina madeyê nîn in û dijayetiya cîbicîkirina wê jî dikin û çênabe bê tifaqiya aliyan ew made bê bicihkirin. Ji ber madeyeke nazik e û her çewtî û kêmasiyek di cîbicîkirina wê de kêşeyên Kerkûk û navçeyên din berbi kûrtirbûna zêdetir dibe.

Madeya 140'ê madeyeke ekspayer, qediyayî ye û ew dema ku ji bo cîbicîkirina wê hatibû diyarkirin derbas bû, lewma pêwîst e niha ev made bi awayekî wisa bê sererastkirin ku di berjewendiya hemûyan de be. Her çiqasî ev ne bi dilê Kurdan e, lê ev rastî ye ku dema vê madeyê qediya ye.

Cîbicîkirina madeya 140'ê bi tenê bi riya yasayî nayê kirin. Eger em bixwazin rastbîn bin, divê çareseriyeke siyasî bi mêkanîzima yasayî ji bo vê meseleyê bibînin, divê çareseriyeke wisa bê ku kêşeyê yekalî bike û dawî li wê bextreşiya ku Kerkûkî tê de ne, bîne.

** Endamê Fraksyona Îraqiye li Parlamentoya Îraqê.*

## Em li dijî cîbicîkirina 140'ê ne û Malikî jî naxwaze lez bike

**Jale Neftçî ***



Madeya 140'ê ya destûra Îraqê bi wî awayî niha pir dijwar e ku karibe kêşeyên Kerkûk û navçeyên cihê nakokiyê bi giştî çareser bike, lewma me hê zû ragehand em vê madeyê red dikin, çimkî ne çareseriyeke guncav e.

Ew made di demekê de hatiye darêştin ku niha demeke din e û pir tişt guherî ne. Pir dijwar e rê li ber cîbicîkirina vê madeyê bê vekirin, di demekê de bi beloqî bê dîtin mafê pêkhateyekê li ser hisabê pêkhateyeke din bê dayin, yan pêkhateyek bê beşkirin li ser bingeha hêzê yan serdestiyê, ev nayê qebûlkirin.

Kabîneya niha ya hikûmetê û nemaze Nûrî Malikî jî ne razî ye bi lez û bezê madeyeke wiha nazik ku pêwendiya wê ya rasterast bi bihevrejiyanê li Îraqê heye, bê bicihkirin. Ji ber ku eger ev çêbibe, wê demê ti wate ji bihevrejiyanê li Îraqê namîne û wê çaxê pêkhateyên Kerkûkê li dijî bicihkirina vê madeyê derdikevin heta wê têk bidin. Lewra pir zehmet e ev made heta çend salên din jî bê bicihkirin. Herwiha ev made bê sereastkirina bendên wê bi wê yekê raya piraniya pêkhate û xelkê Kerkûk û navçeyên cihê nakokiyê li ser be, di warê cîbicîkirinê de nayê xistin.

Em li dijî bicihkirina vê madeyê ne bi wî awayê wê yê niha. Hê jî derfet tune ji bo bicihkirina bendên wê, hê jî rewşa navçeyên cihê nakokiyê aloz e û hêzên çekdar ên partiyan li wan hene û kêşeyeke serekî heye ku hê jî di warê demografîk de pir ji aliyê Kurdan hatine têkdan, lewma divê ev şûnşop di çend salan de bên maliştin, piştre dikare li çareseriyeke qenc bê hizirkirin.

**Endama Tirkmen a Fraksyona Îraqiye li Parlamentoya Îraqê ye.*

## Nabe êdî ev kêşe bê paşxistin

**Xalid Esedî ***



Kêşeya cîbicîkirina madeya 140'ê kêşeya hemû Îraqê ye, niha bûye beşek ji rastiya civaka Îraqê, lewma divê mikurbûn û hevdengiyeke seranserî li ser çareserkirina vê kêşeyê hebe, ev jî hatiye bicihkirin.

Kêşeya serekî ya vê madeyê serjimêriya danîştvanan e ku çend rayên cihê li ser hene û beşek dibêjin hejmareke zêde ya Kurdan ji bajarên Herêma Kurdistanê anîne Kerkûkê, hinekên din jî dibêjin Erebên navçeyên din ku berê Saddam ew anîne çênabe li Kerkûkê bimînin. Êdî kêşe giran e û divê em li mêkanîzmekê bigerin ku hemû alî jê razî bin. Eger na di paşerojê de yek ji wan metirsiyên ku li ser Îraqê derdikeve kêşeya Kerkûkê ye û dibe ku bibe sedemê kêşeya navxweyî ya navbera pêkhateyên Kerkûkê de.

Diviyabû ev kêşe her ji destpêka rûxandina rêjîma berê ya Îraqê bihata çareserkirin, çimkî wê demê hêsantir çareser dibû. Van 7 salan kêşe aloztir kirin û li vir û li wir hest bi maytêkirinê tê kirin. Maytêkirinek ku ji derveyî Îraqê tê, eger çi ev berê beloq bû, lê her metirsî heye û sîbera wê jî maye.

Lewra nabe êdî ev kêşe bê paşxistin. Hikûmeta Îraqê xwedî dezgehên fermî ye, dadgeha wê heye û destûr jî li ber destê wê ye, lewma divê di vî warî de biryara yekalîker bide, ev jî divê bi wî rengî be ku çareseriyeke tewafuqî û mantiqî be. Em dibêjin bila madeya 140'ê bi lihevkirin bê bicihkirin û ti alîyek neyê paşguhxistin.

** Endamê Fraksyona Dewleta Yasa li Parlamentoya Îraqê.*

## Sûdên hevsergîriyê

**Koln (Rûdaw) -** Li gor lêkolîneke kovara biolojiya psîkolojîk, têkiliya hevsergîriyê di navbera du kesên lihevkirî de dibe sedemê kêmkirina dûdiliyê, ew jî zexta xwînê kêm dike.

Lêkolîn li ser 24 jin û 22 mêran hatiye kirin û encam jî hatine tomarkirin ku pêkanîna têkiliya hevsergîrî ji aliyê keç û kur ve berî rûbirûbûna wan li gel her karekî bandoreke berçav li ser çawaniya encamdana wî karî dike.

Herwiha kiryara seksê ji aliyê jin û mêr sîstema bergiriya laş xurt dike. Lêkolînê eşkere kiriye ku cotbûna jin û mêr carekê yan du caran di heftiyekê de dibe sedemê bilindkirina rêjeya proteinê ku ji bergiriya laş berpirs e.

Di lêkolîneke din de derketiye holê ku têkiliya cinsî ya navbera jin û mêran dibe sedemê şewitandina 85 kaloriyên enerjiya laş. Kovara pizîşkê civakê ya Brîtanî wê ya red dike ku têkiliya cinsî ya jin û mêran di salmezinan de zererê digihîne dil û dibe sedemê qirîza dil.

Herwiha lêkolîneke din jî eşkere kiriye ku seks jixwebawerbûnê zêde dike û hest bi aramiyeke derûnî ya zêdetir dike.

Têkiliya hevsergîriyê dibe sedemê zêdekirina hormonê oxidising jî ku weke hormona evînê tê naskirin. Lêkolîneke selimandiye eger têkilî bi tenê hembêzkirin be jî ew hormon zêde dibe û ev jî dibe sedem ku jin û mêr hest bi aramiya derûnî û ruhî bikin, ev hormone herwiha hevkariya mirov dike ku xeweke xweştir û aramtir bike.




Prof.Dr. Îbrahîm Guneş*

## EHEC



EHEC Bakteriyek ku ev demeke di rojevê de ye û ji ber vê bakteriyê li Almanya bi sedan kes nexweş ketine û heta niha 10 kesan ji ber vê înfeksiyonê jiyana xwe ji dest dane.

**Hûnê bakteriya EHEC ji me re çawa şîrove bikin?**

**Prof.Dr. Îbrahîm Guneş:** Ev bakteriya ku niha di rojevê de ye jê re EHEC tê gotin. Di tendirustiyê de bi van navan jî tê naskirin: Enterohämorrhagie Escherichia Coli. Ew bakteriya ku bahsa wê tê kirin bi piranî xwe digihîne roviya mirovan, şanê wan dikuje û toksînê dide şanê roviyan, wan xwîn dike; ji ber wê pir zikê kesên nexweş diçe û dema diçin tûwaletê xwîn ji wan tê. Ji ber kêmbûna xwînê Anemî çêdibe, gurçik jahr dide û karê wê disekine. Bi piranî ev bi pitikan re (bebek), zarok, pîr û kalan re xuya dike. Herwiha ew kesên ku sîstema wan a ÎMMUN kêm e dibe sedema ku jiyana xwe ji dest bidin. Ji sedî 80% vê nexweşiyê sivik derbas dikin. Em dikarin bêjin ji sedî 2% rêjeya mirinê tê xuyakirin.

**Ev bakterî di nava çend rojan de xwe li bedena mirovan belav dike û di kîjan xwereka de ye?**

Ev bakterî 1-3 rojan di canê mirovan de dimînin û piştre xwe nîşan dide. Herwiha nîşanên wî bi vî rengî xuya dikin: zikçuyîna wek av û xwînê çêdibe, êşa zik û sancî çêdibe, mîde tevlîhev dibe; verîşandin zêde dibe û germiya bedenê bilind dibe. Bi piranî berxwedana canê jin û zarokan kêm dibe û herî zû ew nexweş dikevin. Di serî de di sebzeyan de hat xuyakirin. Lê hîn li ser lêkolîn tên kirin, ji ber ku tê gotin ev bakterî bingeha xwe ji çêlek û berazan digre, ji testa mîz û rîxan ev encam derketine holê.

**Divê mirov xwe çawa biparêzin?**

Ev nexweşî ji goşt û sebzeyên xav û ji mirovan jî derbasî mirov dibe. Ango dema ku zibil didine sebzeyan, wan nebata (bîtkiya ) ji wan derbasî sebzeyan dibe û wextê ku mirov jî wan sebzeyan dixwin hingê jî ew bakterî derbasî wan kesan dibe. Em jî dibêjin ew sebzeyên ku li ser wan gûman heye heta ku ji wan tê bila nexwin, wan sebzeyên din jî pir baş bişon û destê xwe jî hertim baş bişon, dema ku gûmana nexweşiyê hebe biçin cem bijîşk. Ji ber vê bakteriyê ne pêwîst e ku mirov xwe pir bitirsînin, ji ber ku rêjeya mirinê ji % 2-3 ye. Dema ku mirov xwe baş biparêzin ti tiştê nabe. Dema ku em dinêrin niha herî pir jin ji ber vê bakteriyê nexweş ketine, ji ber wê jî ez dibêjim divê bi taybetî jin li xwe miqate bin.

***Amadekirin:***
***Zelal Çelîk***

**Prof.Dr. Îbrahîm Guneş*
*ji Bakurê Kurdistanê ye û niha li Almanyayê dijî. Pisporê nexweşiyên hundirîn û pisporê jiyana tenduristiya xwarin û vexwarina ye.*

## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Serokwezîrê Rûsyayê – Bersiva bangkirinê. 2- Qapûtê jinan, jin di ser cilan de li xwe dikin (berepaş) – Dengê derxistina belxema qirikê (berepaş) – Ruhnî, dijberê tarîtîyê. 3- (...Marx) fîlozofê Alman (berepaş) – Welatekî Afrîkayê – Bangkirina zilaman. 4- Nermkirin (ji bo sebze û hêşînayîyan tê bikaranîn) - Tûrikê çerm, bahola piçûk (berepaş). 5- Meha Newrozê – Notayek. 6- Kesê ji Misrê ye (berepaş) – Bi Tirkî meha Adarê (berepaş). 7- Notayek – Bi zimanê Yewnanî (nuh-nû) – Qebûlkirin, temam. 8 – Kurtkirina "Emîna" – Rez, bostan (berepaş). 9- Li bakurê Kurdistanê çiyayek, Agirî, Gilîdax – Çêbû, hat dinyayê. 10- Masîyekî mezin (berepaş) – Teyrikek, çivîk

**Serejêr:** 1-Ronakbîr û şoreşgerekî Fransî, navê wî yê rastîn François Marie Arouet) (1694-1778) e. 2- Kanalek televizyona Almanî (berepaş) – Bêbext, xesîs, nekes (berepaş). 3- Fêkîyek miz û xweş – Roja em tê de ne, ne doh (berepaş). 4- Çikandin, pêkirin, di nav rakirin – Nîşana millet û welatekî. 5- Notayek (berepaş) – Gundê herî piçûk, çend mal. 6- Alet û hacetek muzîkê – Sazîya parêzeran (berepaş). 7- Xayîntî, bêbextî, xapandin – Destnîşankirina kesê duyem (berepaş). 8- Baş, çak, qenc, xweşik – Bangkirina fermanber (berepaş). 9- Teht û kevirên mezin û bilind – Lez, ecele, sivkayî. 10- Jê bombeya atomê çêdibe, maddeyek kîmyewî – Lebat û parçeyekî bedenê. 11- Hezar kîlo. 12- Heman, wek hev (berepaş). 13- Wesifdan û pesindana kesekî, bi taybet pesindana Hz. Mihemed. 15- Dek û dolab, xapandin. 16- Dar, şiv, rewt (berepaş).








## Zagros naxwaze ji kêleka Firat bilive

Firat 6'ê Pûşperê di saet 14:20 de li bajarê Almanya Kolnê jidayîk bû. Zagros jî bi mehan li benda vê rojê bû ku bibe birayê mezin. Ev daxwaza wî êdî bû rastî. Lê dema ku Firat hinekî mezin bibe û bikeve nav pêlîstokên birayê mezin, gelo helwesta Zagros wê çibe? Em vêya nizanin, lê hêvîdarin ku Zagros wê demê jî mîna niha bêhnfireh be.
Firat û Zagros lawên hevkarên Rûdawê Sevda Şafîk (amadekara rûpela zarokan) û Mistefa Şafîk in. Malbata Rûdawê bi jidayîkbûna Firat gelekî kêfxweş e û temenekî dirêj û tendirust ji Firat û dayîka wî re dixwaze.




FÊRÎ KURDÎ BIBE

Pp پ

Pirtûk پەڕتووک



## Gelo giraniya hewa heye?



Gelek caran em dibihîsin ku hinek kes dibêjin 'ev tişt hewqasî sivik e, wekî hewa ye.' Yanî ew kes wiha dizanin ku giraniya hewa qet tune. Bi rastî jî wiha ye û ti giraniya hewa tune? Ji bo em rastiya vê yekê bizanin, divê em vêya lêbikolin, em ceribandinekê pêk bînin.

**Tiştên ji me re pêwîst:**

1. Du balonên tijî hewa.
2. Sê tayê derzî û darek dirêj û rast.
3. Derziyek.

Herdu balonan bi 2 tayê derzî ve girê bide, her balonekê bi aliyekî serê dar ve girê bide. Bi nivê dar ve tayê mayî girê bide û weke tereziyê balonan hilde jor. Tuyê bibînî ku herdu aliyên dar wek hev disekin. Niha jî yek ji herdu balonan bi derziyê biteqîne, ji bo ku hewaya tê de derkeve. Em dibînin aliyê balona tijî hewa nizim dibe û aliyê balona vala bilind dibe.
Wate: balona tijî hewa ji ya vala girantir e û êdî em dizanin ku hewa jî giraniyek xwe heye.

## çima em dipişkin?

Dema buhar tê, gelek kes bênavber dipişkin, av ji çavên wan diherike, pozê wan tê girtin. Sedema vê pişkînê ew e ku toza gul û giya di nava hewa de belav dibe, dikeve çav û difnê mirovan. Dema em nefes digirin û didin, ev toz jî dikeve nava qirika me û heya sîpelka me jî diçin. Encam: Laşê me dixwaze wê tozê dîsa ji bedena me derxîne û em dipişkin.

